## Birca Bizinan bû mêvanxane

Li Diyarbekirê ji mekanên ku herî zêde bala tûrsîtan dikşîne yek jî Birca Bizinê ye. Wisa tê texmînkirin ku Birca Bizinê ya li Sûr a navçeya Diyarbekirê herî kêm 7 hezar salî ye. R15



## 'Kilama Dayika Min'

Fîlma derhênerê kurd Erol Mintaş 'Kilama Dayik Min' kete vîzyonê. Fîlm bi kurdî û tirkî hatiye kişandin û di festîwalên Saraybosnayê û Altın Portakalê de xelat sitendibû. R15


# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL    Hejmar:29   24-30 Mijdar 2014   basnews.com


## Mervan Tan

Mûzîka me di nava tevliheviyekî de ye

R16



# Kongre dîsa hat rojevê



Xebatên Kongreya Netewî ya ku ji 2009'an vir ve ji bo wê tê hewldan, lê her tim tê taloqkirin dîsa di rojevê de ye. Piştî êrîşên DAIŞ'ê yên li Şengal û Kobanê yekbûna hêzên kurd û îmzekirina Peymana Duhokê xebatên Kongreya Netewî ya ku ji bo gel bibû xeyalek, dîsa ket rojeva kurdan. Sîyasetmedarên Kurd ji BasNûçe'yê re axivîn û gotin, dem dema kombûna Kongreya Netewî ye.

Di 15'ê Mijdarê de li Başûrê Kurdistanê 66 partiyên siyasî û sazî li hev civiyan û diyar bû ku kongreya bê xwedî maye, dîsa dikare bê vejandin. Di vê civînê de hat daxûyandin ku ji bo demildest kongre destpêbike divê Komîteya Amadehiyê xebatên xwe bilezîne. Pêşkeftiyên wek refleksa hevpar a leşkerî ya ku li dijî dagirkirina Şengal û Kobanê û îmzekirina Peymana Duhokê bûn sedemeke nû ji bo hêviyên yekitiyê. Rûpel 02-03

## Zarokên Sînema ya Amûdê dijîn

Heta niha li ser bûyera Amûdê gelek çîrok, nivîs û helbest hatine gotin û nivîsin. Derbarê qurbaniyan de reqemên ji hev cuda hatin dayîn. Gelek kes hatin tawanbarkirin... Rûpel 12

## Şirnex

Bajarê Şirnexê sînorê Başûr, Bakûr û Rojavayê Kurdistanê digîjîne hev. Bajêr di nav eyaletên Botan, Behdînan, Zaxros û Mêrdînê de jî wek pirekî ye. Rûpel 10-11

## Kobanê ber bi rizgariyê ve

Kobanê ku zêdetirî du mehan e di bin êrîşên DAIŞ'ê de ye di rojên dawîn de ber bi rewşeke nû ve diçe. Piştî çûyina Pêşmerge, hêzên kurd bi çekên giran erîşên DAIŞ'ê kirin û heta niha bi sedan endamên wan hatin kuştin, bi dehan gund hatin stendin û piraniya bajêr jî hat paqijkirin. Rûpel 05

# Rêya Rojava ji Hewlêre derbas dibe



Tirkiye, ji bo têkiliyên xwe yên bi Rojava û bi taybetî bi Amerîka re ji nû ve bi keys bike û rûpeleke nû veke, hewl dide ji Rojhilata navîn dest bi vê hewldanê bike. Serdana Davutoğlu ya Bexda û Hewlêrê jî di vê çarçoveyê de tê nirxandin. Rûpel 04

Dîsa di vê çarçoveyê de tê gotin ku bi taybetî serdana wî ya Hewlêrê ji bo normalkirina têkiliyên bi DYA re diyar dike ku havkarê herî grîng ê DYA yê Rojhilata Navîn Hewlêr e û Davutoğlu hewl dide ku bi rêya Hewlêrê ve derzên ku li têkiliyan ketiye sererast bike.

## Ji Dêrikê heta Behra Spî Kurdistan e



Rûpel 08-09

Mehmet Gültekin

**Destnivîsên kurdî di arşîvên Elmanya'yê de** R14

Portre

**Şerafettin Elçi** R13

## Ji bo Kongreyê hewldaneke din

Belavoka ku li nûnertiya Hewlêrê ya PDK'ê ji aliyê Dr. Mûsa Kaval ve hat xwendin de ji bo yekîtiya netewî pêk bê û mijarên Peymana Duhokê, berxwedana Kobanê, biryara Parlamentoya Kurdistanê ya derbarê Rojava de û piştgiriya xwe ya bo Kongreya Netewî anîbû zimên hat nirxandin de wiha hat gotin: Ji bo yekitiya netewî xebateke nû û bêhempa xwe li me dike şert. Xebateke bi vî awayî wê têkariyeke gelekî hêja bide xebatên yekîtiyê. Em weke partî, sazî û dezgehên Kurdistanê, têkoşîna Pêşmerge û tevahiya şervanên kurd a li Başûr û Rojava pir hêja dibînin û em bi têkoşîna ku hêzên me li dijî DAIŞ'ê dikin serbilind in.

### Partiyên Kurdistanî li Hêwlêrê civiyan

# Careke din banga Kongreya Netewî

Hefteya borî di civîna ku li Hewlêrê pêk hat û 66 partî û rêxistin tevlî bûn de mijarên giring yên derbarê yekitiya kurdan û Kongreya Netewî de hat niqaşkirin. Di civîna ku wek "Banga Komîteya Amadehiyê ya Kongreya Netewî" jî hat nirxandin de, mijarên ku ji bo 4 parçeyên Kurdistanê bûyî rojev ên weke piştgiriya Rojava û Peymana Duhokê û lezandina xebatên Kongreya Netewî derketin pêş.

Daxuyaniya ku rêxistinên kurdên bakur ên weke KCK û BDP'ê jî mohrkirin de navê gelek rêxistinên din ên parçeyên Kurdistanê jî hebûn. Di civînê de xêjî rêxistinên nêzî KCK'ê yên ji bakur tune bûn û ev yeka jî bû mijara nîqaşan. Herwiha ev rewşa jî bû sedema şiroveyên weke "Ev nabe banga Kongreya Netewî." Herwiha xêjî bakur bersivên parçeyên din bi giştî weke erênî hatin diyarkirin.



**Kongre çima nikare bicive?**

Kongreya Netewî her ku tê rojevê ji bo raya giştî ya kurd dibe sedema kelecanê. Lê belê ji ber daxwazên rêxistin û partiyan yên cûrbicûr ew pêk nayê. Bi taybetî jî di vê heyama ku mînakeke wek rojava li ber çavan e de ji alî rayagiştî ve nirxanidinên wek "Hîn jî ders ji van rûdanan nehatine wergirtin." têne niqaşkirin. Hin komel û aliyên ku di civînê de derketî pêş jî nêrînên wek "Kongreya netewî weke peyvireke netewî li holê bê xwedî maye. Hêzên wek PKK, PDK, YNK û PYD'ê ji bo vê yekê ne amade ne." tînine zimên.

Xebatên Kongreya Netewî di 2009'an de hatibûn dest pê kirin. Lê ji ber "Pêşwaziyên Xabûrê" ji rojevê ketibû. Beriya hilbijartina 2011'yan a Tirkiyeyê careke din hatibû rojevandin. Piştî "Êrîşên Ferqînê" careke din hatibû ji bîrkirin. Lê belê di 2013'yan de bi "Daxwaza Îmraliyê" dîsa ciyê xwe yê rojevê wergirtibû. Ji ber êrîşên Rojava yên di mijdarê de careke din hatibû ji bîrkirin. Digel êrîşên DAIŞ'ê dîsa hatibû rojevê. Lê belê ji ber 'Referandûma Serokatiya Herêma Kurdistan'ê' careke din hatibû ji bîrkirin. Herî dawiyê jî dîsa bi banga alîkariyên Rojava careke din ciyê xwe yê di rojevê de wergirtibû.

**66 partî û rêxistinên ku ji çar parçeyên welat hatin cem hev li ser meseleya Kongreya Netewî û alîkariya Rojova nîqaş kirin**

Bê gûman di van 4 salên bihûrî de li dinyayê û kurdistanê gelek veguherîn qewimîn û van veguherînan jî li ser qedera Kongreya Netewî gelek bandor çêkirin. Belavbûna şerê li Rojhilata Navîn, veguherînên li Sûriyê û Rojava û piştî 50 salî diyarkirina helwesteke aşkere ya Rûsyayê ji van tenê çendek in. Tê payîn, kêşeyên ku Kurdistan dê bi hêzên din ên siyasî re bijî li ser qedera Kongreya Netewî bandora xwe nîşan bide. Herwiha ev yeka hîn jî mijara nîqaşan e.

Xwedîbûna hêzên girseyî, kapasîteya leşkerî û bandora siyasî ji bo rêxistinên kurd dibin mijara niqaşan. Herwiha digel van, pêşkeftinên herî dawiyê û tahdeyên li ser siyasetê jî ji bo blokajên yekitiyê bûn sedemên nermbûnê.

**Tecrûybeya yekem**

Di yekem komîteya hewldana Kongreya Netewî de Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, Hevserokê BDP'ê Selahatîn Demîrtaş, Hevserokê DTK'ê yê wê heyamê Ahmet Turk û KCD, YPD, PJAK, PDK û YNK hebûn. Dihat payîn ku di navbera 24 û 26'ê mijdara 2013'yan de, li Hewlêrê Kongreya Netewî pêk bê; rayedarên dewletên ku kurd lê dijîn û nûnerên dewletên ku kurd bi wan re di têkiliyên dîplomatîk de ne ne jî beşdarî vê kongreyê bibin. Mijara herî giring dê mijara yekitiya kurdan bûyû û dê digel çavdêrên YDA, Rûsya, Îngiltereyê 300 çavdêr jî beşdarî kongreyê bibûyana. Dihat payîn ku vekişîna PKK'ê ya dersînor, pêvajoya çareseriyê û Rojava bên nîqaşkirin. Hatibû diyarkirin ku dê Barzanî serokatiya vê kongreyê bike û ji NY'ê jî çavdêr beşdar bin. Da ku ji bo kurdan ji aliyê NY'yê ve statuya çavdêriyê bê dayîn, hatibû plankirin ku dê serlêdana vê yekê di ser Serokatiya Herêma Kurdistanê û Rojava re bê kirin. Herwiha dê bi vî awayî yekem gava yekitiya navneteveyî jî bihata avêtin.

**Di civînê de careke din pêdiviya yekbûnê hate piştraskirin û daxwaza despêkirina xebatên bo kongreyê hate diyarkirin**

**Gelekî nêzik bû, lê çima hat taloqkirin?**

Yekem civîna amadehiya Kongreya Netewî di 22'yê Temûza 2013'yan de hatibû li dar xistin û dige vê jî gelekî eleqeyeke mezin dîtibû. Hatibû plankirin ku dê 24'ê Sermaweza 2013'yan ev kongre bê li dar xistin. Lê di cîvîna li Silêmaniyê hatî pêk hatî de yekem car sedemên taloqkirinê hatin nîqaşkirin û di kûlîsan de nêrînên weke "Digel ku li Rojava êrîş ewqas zêde bûne ma Kongreya Netewî tê çêkirin?" derketibûn holê.

Herwiha di amadehiyên Kongreya Netewî ya Kurdan de Endamê Rêvebirina KCK'ê Ronahî Serhat di wan rojan de gotibû, yekem rojeva Komîteya Amadehiyê Rojava ye. Serhat, diyar dikir ku ti tiştekî din ê ku xêjî meseleya Rojav bibe mijara nakokiyan tune ye.

Di 12'yê Gelawêja 2013'yan de bi banga Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî mijarên lezgîn ên di rojevê de li Silêmaniyê hatibûn nirxandin û biryar ji bo avakirina heyeteke ku divê rûdanên li rojava bişopîne û dîroka Kongreyê jî li gor van raporên dê bên dê bê diyarkirin, hatibû dayîn.



Lê belê pişt re dereketibû holê ku di mijarên kontenjan û hevserokatiyê de lihevkirin pêk nehatibû û hinek aliyan piranî bi dest xwe xistibû û xwestibû ku vê yekê bi kar bîne. Lê wan kesan dîtine ku armanca wan bi cî nayê. Herwiha bi vî awayî jî civîn pêk nehatibû.

Ev rewşa weke encamên siyaseta rojane hatibû rexnekirin. Lê belê îdîayên wek, "Bandora neyînî ya Îranê li ser çênebûne hebû." jî derketibûn holê. Herwiha Tirkiye û YDA'yê heta wê gavê îtirazî kongreyê kiribûn lê êdî ew jî qanî bibûn û ihtimala beşdarbûna nûnerên wan jî derketibû holê.

Lê bi kurt û kurdasî bi rûdanên dû re, bi taybetî bi dagirkirina DAIŞ'ê û bandorên van ên li ser aliyên kongreyê dabûn nîşan dan û derketibû holê ku diviya aliyên Kongreyê wê çaxê ew kongreya li dar bixistana. Pisporên ku siyaseta kurdan dişopînin tînin zimên ku eger wê çaxê ev Kongreya pêk bihata dê êrîşên DAIŞ'ê evqas ne rûxîner bûyana û qewimînên li Şingal û Kobanê jî dê evqas ne giran bûyana.

**Deriyên girtî**

Li gorî çavdêrên siyasî divê yekem armanca vê kongreyê ne yekitiya hêzên kurdan be, divê yekem armanc çareserkirina kêşeyên di nav wan de be. Li Rojava ji alî PYD'ê ve hemû derî li rûyê partiyên nêzî PDK'ê hatibûn girtin û PDK'ê jî wek bersiv Deriyê Sêmalka li rûyê PYD'ê girtibû. Li 2 aliyên Kurdistanê şerê sar didomiya û diviya tavilê ev şera bihata çareserkirin. Diviya ku Kongreyê ji van kêşeyan re çare bidîtana, diviya Hevpeymana Hewlêrê ya ku ji alî partiyên Rojava ve hatibû îmzekirin bihata nûkirin û diviya ku ev peymana bihata li dar xistin. Ronahî Serhat di daxûyaniyekê de bal dikişand ser vê mijarê û digot; "Digel ku bi awayekî siyasî êrîşên li sir Rojava didomin, deriyên girtî yên sînoran û rewşa xerab ya gel a ji ber van sedeman yekem mijarên rojeva komîteyê ne. Ev ji roja yekem ve ne ku bûne rojeva komîteyê."

Kongreya ku di gelawêjê de nedikarî bicive digel dijminahiya nav parçeyan, dertestiyên li Rojava, mişextî, girtina partiyan, kendên (Xendekên) li sînoran û deriyên girtî careke din ji bo dîrokeke ne diyar hatibû taloqkirin. Kongreya Netewî pêşî hatibû gotin ku dê di 15 Îlonê de, pişt re di Sermawezê de bê li dar xistin. Lê mixabin ku heta niha ew nehatibû li dar xistin û bi qewlî tirkan bibû efsaneya bajaran.

**Îradeya hevpar e an jî ya ragirtî ye?**

Bi rastî êdî mijar ne çareserkirina kêşeyên di nav hêzên kurd de bû. Mijar bi destxistina îradeya Kongreyê bû û ev yeka bibû kêşeyên gelekî mezin.

Serokê Dîwana Serokatiya Herêma Kurdistanê Dr. Fûad Husên derbarê betalbûna kongreyê de ev digotin: "Di navbera PYD û Partiyên din ên kurd ên Rojava de kêşeyen gelekî mezin hene. Hinek partiyan jî belavbûna hêjmarên qoltixan jî ne peşîrandin. PKK'ê got serjimara Kurdistana Bakur ji parçeyên din zêdetir e û got divê nûnerên me hin pirtir bin."

Gelê kurd eleqeya xwe bo belavbûna nûneran nîşan neda û nîqaşên weke "Gelo divê hêjmara nûneran bi serjimarê, bi hêjmara partiyan an jî bi bandorbûna partiyan bê diyarkirin?" neşopand. Li gor agahiyên ji kûlîsan dihatin, PKK'ê dixwest ku ji 600 nûnerî bibe xwediyê 230 nûnerî. PKK'ê ji bo Kurdistana Başûr 150, ji bo Kurdistana Rojhilat 90, ji bo Rojava jî 130 nûner dixwestin û di vê mijarê de jî israr dikir. Herwiha bi daxwaza PKK'ê ya sawa xwedîbûna nûnerên pirtir, partiyên başûr eciz kiribû û ji ber vê yekê jî kongre ji bo dîrokeke ne diyar hatibû taloqkirin.

Rayagiştî ya Gelê kurd ê ku ti sedem ji bo taloqkirina Kongreya Netewî qebûl nedikir bi vî awayî xeyalên xwe yên yekitiyê jî wenda kiribûn. Kongreya ku ji Gelawêjê taloqî Îlonê, ji Îlonê jî taloqî Sermawezê bûyî, êdî bibû qurbana kêşeyên mijarên çareserkirinê. Siyaseta kurd sedemên taloqkirina kongreyê ji rayagiştî ya kurd re negotibû û sedema fermî jî wek hilbijartinên Kurdistana Başûr dabû nîşandan.

Di belavoka hevpar de, pişgiriya partî, sazî û dezgehên îmzevan hatin diyarkirin û ji Pêşmerge, Gêrîlla û tevahiya hêzên Kurdistanî û yên ku bi pişgiriyên xwe ev berxwedana berzkirî re, ji 4 parçeyên Kurdistanê re, ji gelê kurd ê li Avropa û çar aliyê dinyayê re, ji Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî (ku bi pêşengiya wî ev peyman hatibû çêkirin) re, ji Parlamentoya Kurdistanê re, ji ber şandina çekên giran û hêzên peşmer ji Wezareta Pêşmergeyan re sipasî hatin kirin û ji ber sozdayîna sepandina Hevpeymana Duhokê ji bo TEV-DEM Û ENKS'ê jî pîrozbahî hatibûn bi lêv kirin.

Di vê belavokê de ji hemû partiyên siyasî him bi awayê siyasî him jî bi awayê leşkerî yekitî hatibû daxwaz kirin û ji Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî û tevahiya hêzên Kurdistanî daxwaz hatibû kirin ku ew bêhtir û tavilê bo pêkanîna Kongreya Netewî rolê werbigirin ser xwe: Em ji Komîteya Amadehiyê ya Kongreya Netewî daxwaz dikin ku divê ew bêhtir ji bo pêkanîna vê kongreyê bilezînin. Ji tevahiya aliyên Kurdistanî daxwaza me ev e; divê kongre tavilê bicive û bibe navenda biryarstandina hêza herî mezin û ya herî bi bandor li Kurdistanê."

## Siyasetmedar Mehmed Emîn Pencwînî



Mehmet Emîn Pencwîniyê ku him di navbera PDK û PKK'ê de û him jî di navbera Tirkiye û PKK'ê de navbeynkariyê dike, derbarê mijara kongreyê de wiha got: Li Kurdistanê 2 hêzên sereke hene. PDK li başûr ber bi dewletbûnê ve diçe. Sazî û dezgehên vê yekê ava dike. Çavên tevahiya dinyayê li vir in. Ev der ji bo kurdan bûye navendeke girîng. Ji ber têkoşîna li bakur PKK jî di siyaseta kurdan de bûye akteke giring. Di biryarên derbarê kurdan de yek ji hêzên herî mezin û berpirsiyar e. Ez hêvî dikim ku ev her du hêz bibin dostên hev. Ez hêvî dikim ku ev her du navendên girîng ji ber berjewendiyên jirêz, ji ber hesabên biçûk ên îqtidarê neyên hember hev û ew di mijara parastina berjewendiyên gelê kurd de bibin yek. Dostaniya wan li 4 parçeyên Kurdistanê wê qedera kurdan biguherînin. Dijminahiya wan jî wê tevahiya destkeftiyan ji holê rake û xerab bike.

## Sekreterê Giştî yê Partiya Demokrat a Yekitiya Netewî Xafûr Maxmûrî



Xafûr Maxmûrî diyar kir wan ji bo pişgiriya Rojava ev civîna pêk anîne û got: 66 rêxistin beşdarî civînê bûn. Di van rojên ku berxwedana Kobanê derketîye pêş de divê em wek aliyên kurd bêhtir li vê yekê xwedî derkevin. Em li vir li ser xebatkirina bi hev re bêhtir axivîn. Lewra divêtiya me bi vê yekê heye. Me wek Komîteya Amadehiyê ji tevahiya aliyan re bang şand û me diyar kir ku divê tavilê kongre bê pêk anîn. Me him ji bo Rojava piştgiriyên xew anîn ziman û him jî me ji bo Kongreya Netewî banga xwe diyar kir. Divê kongre di demeke nêz de kombibe.

## Endamê Polîtburoya PDK-Î'yê Rostem Cîhangîrî



Rostem Cîhangîrî jî kêmbûna beşdarvanên ji 4 aliyan rexne kir û derbarê civîna ku ji bo Kongreyê hatî kirin de wiha axivî: Diviya hêzên bi hêz û bi bandor jî beşdarî vê civîna li Hewlêrê bibûyana. Divê bi beşdarbûna tevahiya aliyan û bi wergirtina biryarên hevpar a komîteyekê bihata li dar xistin ev yeka. Em wek PDK-Î'yê ji bo kongreyê wisa difikirin; pêwist e tevahiyên aliyên dikarin biryara bistînin li vir amade bin. Ji bo serketina kongreyê divê ti kes neyê îzolekirin û fikra herkesî bê standin. Divê Kongreya Netewî ji "aqilmendên kurdan" pêk bê. Divê ji bo paşeroj û berjewendiyên kurdan biryar bên standin.

## Hevserokê DBP'ê Kamuran Yüksek



Di demên dawî de pêşketinên girîng dibin. Ev pêşketin dibin sedem ku her kes nêrîna xwe ya li ser zemîna teoriyê careke din di ber çavan re derbas bike. Bûyera Şengalê, Peymana Duhokê û Kobanê bo Yekîtiya Netewî dibin pêngav. Heta îro hewldan û xebatên girîng hatin kirin. Ji hin sedemên cihê em nehatin asta Yekîtiya Netewî û Qongreya Netewî. Helbet bûyerên ku diqewimin û ezmûna jiyanê her ku diçe vê yekê weke berpirsiyariyeke dîrokî derdixe hemberî me. Dê ev bibe bûyereke erînî. Divê em ji vê bûyera ku 100 salê dahatûya kurdan diyar bike nerevin. Em di vî warî de bi hêvî ne. Hem Yekîtiya Netewî bê lezkirin û lidarxistina Kongreya Netewî bê kirin. Bo ku em îro û sibê li hember bûyerên neyînî bikaribin bi hev re gav biavêjin ev tiştek pir girîng e.

## Serdana Davutoğlu

# Hewlêr ji bo Tirkiye henase ye!

Ahmed Davutoğlu'yê di dema ku DAIŞ'ê sinyal dida ku wê bibe aktorê herî belakir ê Rojhilata Navîn Wezîrê Karên Derve bû, wek mesûlê pirsgirêkên Tirkiye yên polîtîkaya derveyî, bi tûndî hate rexnekirin. Li gor hin analîzan tê gotin ku Davutoğlu'yê ku niha Serokwezîr e, hewl dide ku ew têkiliyên ku şkestin xwariye bi ser Hewlêrê ve, ji nû ve bigeşîne.

**Tirkiye, bi Hewlêrê re vedigere dinyayê!**

Davutoğlu roja îniyê, piştî ku li Bexdayê bi Serokkomar Fûad Masûm, Serokwezîr Haydar Îbadî, Serokparlaman Selîm Abdula Cûbûcî, Cîgirên Serokkomar ên sunne û şia Ûsame Nûceyfî û Îyad Alavî, Serokê Lijneya Bala ya Îslamê Emmar El-Hekîm, Wezîrê Karên Derve Îbrahîm Caferî, Wezîrê Darayî Hoşyar Zebarî û parlemanên Tirkman re hevdîtinan pêk anî derbazî Hewlêrê bû.

Davutoğlu, li Frokexaneya Hewlêrê ji alî Serokwezîr Nêçîrvan Barzanî ve hate pêşwazîkirin. Davutoğlu, piştî bi Nêçîrvan Barzanî re hevdîtin pêk anî çû serdana Serokê Herêma Kurdistan Mesud Barzanî. Piştî hevdîtinê, Barzanî û Davutoğlu bi daxuyaniyeke hevbeş a çapemeniyê di derbarê hevdîtinê de raya giştî agahdar kirin. Davutoğlu, ji bo kesên ku çend roj berê di rûdana teqîna li Hewlêrê de jiyana xwe ji dest dane sersaxî xwest û got: "Ev êriş ji diyar dike ku li Iraqê babeta herî grîng ewlehî û aramî ye."

**Rêya rojava di Hewlêrê de diçe!**

Tê gotin ku Tirkiye, ji bo têkiliyên xwe yên bi Rojava û bi taybetî bi Amerîka re ji nû ve bi keys bike û rûpeleke nû veke, hewl dide ji Rojhilata navîn dest bi vê hewldanê bike. Serdana Davutoğlu ya Bexda û Hewlêrê jî di vê çarçoveyê de tê nirxandin.

Dîsa di vê çarçoveyê de tê gotin ku bi taybetî serdana wî ya Hewlêrê ji bo normalkirina têkiliyên bi DYA re diyar dike ku havkarê herî grîng ê DYA yê Rojhilata Navîn Hewlêr e û Davutoğlu hewl dide ku bi ser Hewlêrê ve derzên ku li têkiliyan ketiye serarast bike.

Wek tê zanîn Tirkiye, di babetên pêvajoya çareseriyê, korîdorên enerjiyê, geşedanên leşkerî, hevkariya Rojava û Hewlêr û referanduma serxwebûnê de bi Hewlêrê re ne partnerekî hevseng e.

Êdî wê guhê Enqereyê li Hewlêrê be û ji ber vê yekê mirov dikare bêje grîngiya serdana wî ya Bexdayê di bin siya serdana Hewlêrê de ma.

**Davutoğlu li Hewlêrê çi da û çi stend?**

Balkêşiyeke din a vê serdanê jî, mijarên ku aliyan diyar kirin ku li serê mutabiq bûne. Yekem care ku çapemeniya Tirkiyeyê qala tawîzên ku wê Hewlêr bide Tirkiyeyê nake, berovajî qala mijarên ku Tirkiye dikare alîkariya Hewlêrê bike dike. Sedemên ku Enqereyê hewcedarê Hewlêrê dike bêguman Pêvajoya Çareseriyê û şkestina têkiliyên wê yên bi Rojava re ne. Weke tê zanîn ji destpêkê heta niha, di mijara Pêvajoya Çareseriyê de Herêma Kurdistan hem wek çavdêr, hem wek garantor û hem jî wek welatê ku wê PKK xwe vekêşîne wê derê, gellek mîsyon hilgirtiye ser xwe. Li gel van mijaran, mijara xettên enerjiyê û geşedanên li herêmê jî sedemên ku Enqere dest ji quretiya xwe berde û bi Hewlêrê re di asteke hevseng de têkiliyan bimeşîne.

Yekem car ji raya giştî re hate ragihandin ku Tirkiye di bernameya perwerdekirina Pêşmerge de cih girtiye, li Kurdistman perwerdehiya leşkerî dide Pêşmerge û ev piştgirî wê hîn berdewam bike. Di mijara DAIŞ'ê de jî Davutoğlu hin sozan da Barzanî. Xuya ye ku wê aliyekî sekreteryaya ku ji bo pêvajoya çareseriyê tê nîqaşkirin li Hewlêrê be. Serdana Davutoğlu ya kampa ku Pêşmerge lê tê perwerdekirin jî diyar dike ku Tirkiye di mijarên leşkerî de jî xwe derbasî zemîneke aram dike û li ser wê zemînê rûpelekî nû vedike. Li hemberê vê helwesta Enqereyê, Hewlêr jî bi helwesteke mûtevazî û bixwebawer balê dikêşîne ser xwe.

**Xalên siyasî, aborî, ewlehî û mirovî hatin nîqaşkirin**

Davutoğlu jî da zanîn ku wî li Hewlêrê hevdîtinên erênî pêk aniye û got: "Ewlehiya Iraqê ji bo me grîng e, lê belê ji ber ku cîranê me ye, ewlehiya Herêma Kurdistan hîn grîngtir e bi ewlehiya Tirkiyeyê re rasterast têkildar e."

Davutoğlu diyar kir ku ji bo ewlehiya Herêma Kurdistan çi piştgirî pêwîst be ewê bikin û got: "Em li ser mijara perwerdekirina Pêşmerge jî rawestiyan, wê piştgiriya me ya di derbarê ewlehiyê de dom bike." Davutoğlu da zanîn ku di hevdîtinê de ew li ser xalên siyasî, aborî, ewlehî û mirovî rawestiyane.

Li ser peymana petrolê ya Bexda û Hewlêrê jî Davutoğlu da zanîn ku ew ji vê peymanê pir kêfxwe bûne û ji bo vê yekê ew amadene ku piştgirî bidine aliyan. Davutoğlu got: "Pêdiviya Tirkiye ya enerjiyê diyar e û Tirkiye herdem sozên xwe bi cih tîne." Di desteya ku bi Davutoğlu re hate Hewlêrê de hebûna Rawêjkarê MÎT'ê Hakan Fidan, Cîgirê Serokwekîr Yalçın Akdoğan û Wezîrê Karên Hundur Efkan Ala yên ku di pêvajoya çareseriyê de kesên pir çalak in jî balê kêşa.



**Tê ragihandin ku serdana Serokwezîrê Tirkiyeyê Ahmet Davutoğlu ya Hewlêrê, ji serdaneke rûtîn bêtir, ji bo, ji nû ve geşkirina têkiliyên Enqereyê yên ku ji ber helwesta wê ya DAIŞ'ê bi Rojava re şkestinek xwaribû ye.**

### Em û Tirkiye nêzîkî hev in

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, di daxuyaniya çapemeniyê ya ku piştî hevdîtina bi Davutoğlu re hate dayîn de destnîşan kir ku di hevdîtina bi Davutoğlu re ew li ser babetên ewlehî, siyasî, aborî û gellek babetên din rawestiyane û got: "Em û Tirkiye nêzîkî hev in. Di vê hevdîtinê de me li ser meşandin û geşedandina hevkariya Tirkiye û Herêma Kurdistan, hevkariya li dij terorê û geşedandina hevkariyên aborî yên duali biryaran wergirt." Barzanî da zanîn ku wê rojê 150 hezar varîl Petrola Kurdistan di bin çavdêriya SOMO'yê, bi ser Tirkiye ve derbasî bazara cîhanê bibe û di bergidana vê de wê Bexda jî du dananên ku ji 500 milyon dolarî pêk tê radestî Kurdistan bike. Barzanî got: "Peymana bi Bexdayê re bi encam nebûye. Di rojên pêş de wê desteyeke me biçe Bexdayê û ewê dikaribe peymanê bi encam bike."

Ji alî din ve Mesûd Barzanî, hefteya çûyî ji televizyona Frensî France 24 re ragihand ku ew di referanduma serxwebûnê de bi israr e û ewê dest ji vê israra xwe bernede. Barzanî diyar kir ku tu tişt nikare li hember vê daxwazê raweste û got: "We dem dibe ku hinekî dereng pêk bê lê belê ji vê yekê veger nabe û wê kurd tu carî dest ji mafê xwe bernedin." Li ser pirsa peyamnêr a 'Tu dixwazî bibî serokê hemû kurdan?' jî Barzanî got: "Tu carî xeyaleke min a wisa çênebûye. Ji bo min a grîng serxwebûna Kurdistan e, postê seroktiyê nîne."



## Armanc li Kurdistanê tunekirina DAIŞ'ê ye

# Kobanê ber bi rojên berê ve

Kobanê ku zêdetirî du mehan e di bin êrişên DAIŞ'ê de ye di rojên dawîn de ber bi rewşeke nû ve diçe. Piştî çûyina Pêşmerge, hêzên kurd bi çekên giran erîşên DAIŞ'ê kirin û heta niha bi sedan endamên wan hatin kuştin, bi dehan gund hatin stendin û piraniya bajêr jî hat paqijkirin. Li Kobanê rewş asayî û aramtir dibe, tirsa ku DAIŞ'ê belav kiribû ji holê radibe û welatiyên ku ji bajêr derketibûn vedigerin Kobanê. Li gor nûçeyên ku ji herêmê tên ji sedî 80 kontrola Kobanê di destê Pêşmerge û YPG'ê de ye. Herwiha hêvîdariya ku Kobanê vegere rojên xwe yên berê digihîje rastiyê. Fermandarên Pêşmerge û YPG yên li Kobanê rewşa şer ji BasNûçe'yê re ragihandin û diyar kirin ku armanca esas ew e ku DAIŞ bi temamî ji Kurdistanê bê tunekirin.

Piştî ku xetera ketina Kobanê kêm bû, cihê ku di rojeva cîhanê de dadigirt jî kêm bû lê tekoşîna dijwar ya hêzên kurd ku li hember DAIŞ'ê didin berdewam e. DAIŞ ne tenê li Kobanê her wisa li Başûr jî li ber şikênandinê ye. Li Serêkaniyê ku li rojhilatê Kobanê dikeve, hêzên YPG'ê yek bi yek gundan ji DAIŞ'ê distîne û însiyatîfê dixe destê xwe. Li Başûrê Kurdistanê jî operasyonên ku Pêşmerge dabû destpêkirin berdewam in. Bêyî hin deverên Şengalê hemû xaka Kurdistanê niha di bin kontrola Pêşmerge de ye. Li Şengalê jî amadehiya operasyoneke mezin tê kirin û çavlirê ye ku ev operasyon di demek nêzîk de destpê bike. Li herêmê operasyonê bi rizgarkirina Zumar û Rebîayê hat destpêkiribû. Rêveberiya Herêma Kurdistanê ji bo Şengalê yekîneyek teybet amade kiriye û armanca wan ew e ku DAIŞ'ê ji Kurdistanê paqiş bike.

Bi pêşketina hêzên kurd hejmareke zêde sîvîl jî vegeriyan malên xwe.

Berdevkê YPG'ê Polat Can ku li eniya şer e, diyarkir ku piraniya êrişên DAIŞ'ê hatiye şikênandin û DAIŞ'î di nava bajêr de asê mane û her dem bi bêtêlan daxwaza alîkariyê dikin. Polat Can diyar kir ku rizgarkirina Kobanê nîzik e û derbarê rewşa dawî ya Kobanê de ew agahî dan, "DAIŞ li Kobanê ketiye tengavê û asê maye û her diçe xwîna laşê wê diherike. Ji ber ku wendayiyên wan pir in, ji endamên xwe yên din daxwaz dikin ku werin Kobanê şer bikin. Tu fêdeyek vana jî nabe. Li Kobanê Pêşmerge, YPG û Artêşa Sûriyê ya Azad xaka ku di destê xwe de ye diparêzên û bi tu awayê DAIŞ nikare pêşbikeve."

Polat Can, di derbarê stratejiya dawî ya YPG'ê de agahî dan BasNûçeê û got ku gerîlayên YPG bi qasî 60 kîlometre diçin derveyî bajêr û çalakiyan li dar dixin. Can wiha domkir, "YPG di van demên dawî de dest bi çalakiyên gerîlatiyê kir. Diçe cihê ji navenda bajêr dûr çalakiyan li dar dixe. Carinan ev navber dibe 60 kîlometre. Ji ber ku em erdnîgariya Kobanê dizanin em bi avantajin û çalakî bi piranî encama serkeftinê pêk tîne. Bi vî awayî DAIŞ nikare bala xwe tenê bide ser bajêr û bi neçarî rêyên xwe diguherîne."

Di derbarê pirsa me ya, 'hêzên kurd di nav bajêr de pêş dikevin an na' de Can got ku rewş her dem diguhere lê bi tu awayî hêzên kurd bi paşve nakişên. Can ew gotin bi lêvkirin: "Li eniya şer dem bi dem, roj bi roj rewş diguhere. Em ji wan mewziyan digrin û pêş ve diçin. Piştî ku Pêşmerge hat Kobanê bi tu awayê paşve kişîn çênebû. Mewziyên wan ji hêla balafirên Hêzên Koalîsyonê ve tê bombekirin û ji jêr ve jî Pêşmerge bi çekên giran ku bi xwe re anîbû bombe dike. Ez ne bawer im ku DAIŞ karibe demek dirêj li ber xwe bide."

Can, di derbarê wendayî û birîndarên hêzên kurd de jî axivî û got ku; "Şerekî mezin heye û DAIŞ her topan diavêje. Di rewşek wiha de birîndarbûn tiştekî normal e" û da zanîn ku di demên dawî de birîndarî û wendayiyên hêzên kurd kêm bûne û ev jî moralê dide wan.

Can destnîşan kir ku, piştî Pêşmerge derbasî Kobanê bû alîkariya Herêma Kurdistanê berdewam dike lê ji ber hin astengî û pêşîlêgiritnan, teqemeniya ku tê şandin yan di dema xwe de nagihîje an jî kêm dikeve destê wan.

Herwiha Can li ser civîna hêzên kurd ya li Hewlêrê jî da zanîn ku ew geşedan wan kêfxweş dike û xebatên bo pêkhatina kongreya neteweyî weke gaveke grîng bi navkir. Can angaşte kir ku ew hêvîdar in ku kongreya neteweyî bi lez û di demeke kin de pêk bê da ku hemû pirsgirêkên Kurdistanê çareser bike.

**'Hêzên kurd serdest in'**

Fermandarê Yekîneyên Pêşmerge yê li Kobanê Ahmet Gerdî jî di derheqê rewşa dawî de agahî dan BasNûçe'yê û da zanîn ku her çiqas şer berdewam be jî li gor rojên bihorî niha aramiyek li bajêr serdest e û pêşveçûna hêzên kurd bê navber didome.

Gerdî diyar kir ku, DAIŞ di nava êrişên balafir û hêzên kurd de bê çare dimîne û wiha berdewam kir, "DAIŞ di hêla moralê de têk çûye. Hejmareke mezin ji mîlîtanên wan mewziyên xwe dihêlin û direvin, ji ber vê yekê jî di nava wan de arîşe destpêkiriye û di şerê nav xwe de wendayiyên wan pir dibin. Ji bo rê li ber vê bigrin, mîlîtanên nû tînin."

Li ser nûçeyên ku derheqê birîndar û wendahiyên hêzên kurd de jî Gerdî bi zelalî agahî dan û rewa kir ku di rojên dawî de 10 Pêşmerge birîndar bûne û ew li ser lingan hatine dermankirin û ji ber ku ne giran birîndar in ew jî dîsa vegeriyane nava şer. Gerdî destnîşan kir ku tenê du Pêşmerge ji ber birînên xwe hatine emeliyetkirin û wendayiyên wan çênebûne.

Di derheqê rizgarkirina Kobanê de jî Gerdî ragihand ku ew yek ne meseleyeke pir dirêj û bi zehmet e lê di demeke pir kirt de jî ne pêkan e. Gerdî wiha dirêjî da axaftina xwe, "Em bi êrişeke bi bandor dikarin bajêr ji wan cehşan paqijkin. Bo vê jî amedekariyên me yên hevpar destpêbûne û didomin. Lê ji bo êrişeke bi vî rengî derfet, şert û mercên li gor tevgerê divê. Ku dema wê hat em dê dest bi operasyoneke mezin bikin û hêvîdar im ku emê di demeke nêz de bi serkevin."Di dawiya axaftina xwe de jî Gerdî anî ziman ku DAIŞ ketiye nava xofeke mezin, ji hela moral û motîvasyonê ve têk çûye û di warê meşandina taktîkan de jî hêzên kurd serdest in.



Polat Can



Ahmed Gerdi



YPJ

## HDP'ê alavên Rûdawê li wan vegerand

Peyamnêrê Rûdaw'ê yê Enqerê Şevket Herkî jî got,"Gava ku ez derbasî ba hevalan bûm hinekan ez wergirtim odeyekê û li min gef xwarin. Ji min re gotin,'Divê tu ji Rûdaw'ê derkevî. Ew qenela MÎT'ê ye, ya Fetulah Gûlen e.' Paşê ez berdam. Lê alavên min nedane min. Gotin 'emê di derbarê we de lêkolînê bikin.' Lê belê kesên pir profesyonel bûn. Her wiha di tevahiya rojê de em li wir bûn û ti kêşe derneketin. Berêvarê ev kesana derketin holê û ti nîşana endamtiya wan a HDK'ê tunebû. Ez bawer nakim ku ew HDP'yî bin. Lewra Mehmet Doymaz, Rêveberê HDP'ê yê Enqerê ye, li min geriya û xemgîniya xwe anî ziman."

Şevket Herkî diyar kir ku wî xwestiye bi wan kesan re bi kurdî xeber de lê wan kesan nehiştiye ku ew bi wan re bi kurdî xeber de. Şewket Herkî wisa pê de çû: " Bi rastî me qet nexwest ku em wan kesan gilîyê dewleta Tirk bikin. Lewra ez bixwe jî bi dehan caran ji alî wan ve hatim binçavkirin. Hatim îşkencekirin. Ez ji ber lêdanên wan bi dehan rojan di nexweşxaneyan de mam. Lê belê ji ber alavên me yên teknîkî em mecbûr man. Lewra diviya ku me wendabûna van alawan bi awayekî fermî diyar bikira. Eger ku me wisa nekira dê barê wan alawan di stûye me de bimaya. Herwiha ev ne di dest me de bû, lewra ev yek dikeve mijara dozên gelemperî. Herwiha ez naxwazim mirîşkeke kurdan jî di dest wan de biêşe. Ji lewra eger ku ew kesana kurd bin ezê herî kêm bi qasî wan bi vê yekê bieşim. Û heft mixabin ku ji ber vê yekê em bûne mijara çapemeniya tirk ku wan ev yeka kir sedem û careke din em wek kesên hov, nezan û dijminê hev nîşan dan û gotin 'Ji kurdan bo kurdan lêdana demokratîk' û hwd."

Serokê Komaleya Sînemager û Televîzyongerên Kurd (Kusî-Kurd) Salih Silêmanî jî ji BasNûçe'yê re ev yeka nirxand û got, "Di van rojên ku yekitiya kurdan pêk tê de rûdanên wiha zirarê didin gelê me. Em vê yekê şermezar dikin û em hêvîdar in ku berpirsiyar bên dîtin. Divê hemû sazî û dezgehên kurdan hay ji yekitiya kurdan hebin." Silêmanî bal kişand ser giringiya çapemeniyê û wisa pêdeçû: "Her kes divê bi taybetî rêzê li çapemeniya kurd bigire. Lewra çapemenî dev û dengê gel e. Em zextên li ser medyayê bi ti awayî qebûl nakin."

Rûdawa Enqerê diyar kir ku ji HDP'ê bi re têkilî danîne û gotine, "Me alavên we dîtin û em dê digel ravekeyekê alavên radestî we bikin."

# Êrişên ser xebatkarên Rûdaw TV didomin

Rogenr Ehmed

Êrişên ser xebatkarên Rûdaw TV didomin. Cara dawîn tîma Rûdaw TV li Enqerê di kongre ya HDP'ê de leqayê êrişê hatin. Berê jî çendîn car peyamner û kameramanên Rûdawê leqayê êrişên alîgirên HDP'yî hatibûn.

Xebatkarên televizyona Rûdaw'ê yên Enqerê hetfeya borî di 5'mîn Kongreya HDK'ê de rastî êrîşê hatin û alavên wan ên teknîkî hatin desteserkirin. Piştî vê êrişê tîma Rûdaw'ê derbarê êrişkaran de gilî kir. Nûnerê Rûdaw'ê yê Enqerê Kemal Avcı got, "Ji ber ku alavên me hatin desteser kirin û hevalên me rastî êrîşê hatin jixwe ev yek bû doza giştî. Lewma em jî mecbûr man ku vê yekê diyar bikin. Eger ku ji ber vê yekê ti tişt bê serên xortên kurd herî bêhtir em ê biêşin."





Herwiha heta niha digel vê êrîşê xebatkarên rûdawê rastî êrîşan hatibûn û hevserokê HDP'ê selehatîn Demîrtaş jî gotibû, "Em êrîşên bi vî rengî bi ti awayî qebûl nakin." Hefteya bihûrî di 5'mîn Kongeya HDK'ê de dîsa tîma Rûdawê rastî êrîşa hin kesan hatibû û kamerevan û montajvanê tîma Rûdawê birîndar bibûn. Kemal Avcı rûdan wisa vegot, "Em ji alî HDK'ê ve bi avayekî fermî hatibûn vexwandin. Hevalên me jî da ku weşana zindî bikin tevahiya alavên me bi xwe re birin. Piştî nîvro saet 15:00'yan de hinek kesan hevalên me kişandine odeyekê û him alavên me yên teknîkî şikandine û him jî êrişî hevalên me kirine û ew birîndar kirine. Ji wan re gotine; 'Rûdaw qenela MÎT'ê ye, ya Fetûlah Gûlen e, ya DAIŞ'ê ye." Gava ku peyamnêrê me Şevket Herkî ev yeka veguhestand min, ez hema li Cîgirê HDP'ê yê Berpirsiyarê Çapemeniyê Saruhan Oluç geriyam. Min got 'divê hûn alavên me bidin me.' Wî jî got, 'Baş e, em ê bibînîn û bigihînin we.' Lê piştî saetekê ew li min vegeriya û got 'mixabin ku me ew kesan jî nedîditin û alavên we jî. Ew kesana ne endamê me yên fermî ne. Dibe ku ew ji derveyê Enqerê hatibin."

Avcı got,"Gava ku li Hewlêr'ê ofîsa DÎHA'yê hate girtin min di twîterê de got ev yek xelet e. Ez jî wek Nûnerê Enqerê carinan Rûdawê rexne dikim. Ev heqê herkesî ye. Lê rexne cuda ye. Êrîşkîrin cuda ye. Ti raveya vê yekê nabe. Tevgereke ku bi sedan şehîdên xwe yên çapemeniyê hene çawa tiştekî wisa dike. Em hêvî dikin ku ev rûdana dawiyê be."

"Ji ber ku alavên me hatin desteser kirin û hevalên me rastî êrîşê hatin jixwe ev yek bû doza giştî. Lewma em jî mecbûr man ku vê yekê diyar bikin. Eger ku ji ber vê yekê ti tişt bê serên xortên kurd herî bêhtir em ê biêşin."

Êrişên ser xebatkarên Rûdaw TV didomin. Cara dawîn tîma Rûdaw TV li Enqerê di kongre ya HDP'ê de leqayê êrişê hatin. Berê jî çendîn car peyamner û kameramanên Rûdawê leqayê êrişên alîgirên HDP'yî hatibûn.



# Wahşet û însaniyet

Roşan Lezgîn

Bî hîrê serrî ma benê şahidê şîdetêkê hovî ke hîna zaf Sûrîye de dewam keno. Hema vajê ke her roje bi desan însanê sivîl yan çekdarî şer de kişîyenê. Ma nêvînenê û nêzanê ke nê însanî senî kişîynê, tena ma xeberan ra reqeman eşnawenê. Labelê tora înternet de, networkanî sosyalî yê sey Facebook, Youtube û ê bînan de ma bi çimanê xo vînenê.

Êyê ke qetlîam kenê, demeyê kiştişî de ancenê kamera û sey vîdeo înternet de vila kenê. Badê ke vîdeo kewt înternet, êdî her kes eşkeno kopî bikero yan zî lînkê ey bigîro û profîlê xo de vila bikero. Bi no qayde her cayê dinya de her kes eşkeno seyr bikero.

Helbet cayêk de herb, şer û prodayîş bibo kiştiş zî esto. Çîyo ke hetanî nika ma zanayne, di hetê ke yewbînan de şer kenê, zemanêk bi şimşêr û kalmeyan la nika bi çekanê sivik yan giranan, heta hewa ra bi teyareyan yewbînan bombarduman kenê. Kam ke nêeşka xo bipawo, kam ke kewt ver, bi derba guleyî yan bi parçeyê şarapnelî birîndar beno û dima zî mireno. Labelê şero ke Sûrîye de beno qet wina nîyo! Însanê hovî bi wehşîtîya ke kesî nêdîya însanan kişenê ke merdim nêeşkeno qal bikero.



Grûbê îslamî yê sey En-Nusra, bitaybetî mensûbê DAIŞ'î gama ke yew bi yew yan bi komelî merdiman kişenê, bidetay ancenê kamera û sey vîdeo înternet de vila kenê. Xora nê grûbî resenê kamca, eynî sey yecucmecucî kerra kerra ser o nêverdanê, her çî wêran kenê. Mi bi xo hetanî ewro gelêk vîdeoyê winasî seyr kerdê. Zafê înan de psîkolojîyê merdimî xeripîyeno. Coka ez bi xo nêwazena bivînî la merdim senî ke keweno înternet, her roje çend vîdeoyê neweyî vejyenî vernîya merdimî.

Mesela, nê vîdeoyan ra yew wina yo: Hewt-heşt çekdarê DAIŞ'î beyraqa xo ya sîyaye ke nameyê Homa û pêxamberî ser o nuşto, gênê û wenişenê pîqabêk. Yabanêko tenha de rayîro hîra yê asfaltî ke di şerîtî yo, birnenê. Biney badê, wet ra çar hebî tir kamyonî têdima yenê. Çekdarê DAIŞ'î înan danê vindarnayîş, şoferan anê war, binê versîya yew kamyone de danê roniştiş. Zaf eşkera yo ke şoferî merdimê sade yê, xo rê rizqê tutanê xo dima yê, eleqeyê înan bi rejîmî yan sîyasetî çin o. Îhtîmalêko pîl bar kirişto berdo yew bajar û ageyrayê. Çekdarêk ke rî û herdişa ey qasê di vincewî derg a, înan ra persê nimajê serê sibayî keno ke çend rekatî yo. Yew şofer vano "Panc rekatî yo." Di şoferê bînî zî sey ey vanê "panc" la o peyên vano "Di rekatî yo." O ke vano di rekatî, ey cîya kenê. La her hîrêyê bînî seba ke nusayrî yê, derheqê detayanê nimajî de wayîrê melmutî nîyê. Çekdarî înan benê refujê mîyanî rayîrî de danê roniştiş. Şoferan ra yew fetilîno ke xo ra pey biewnîyo hela se beno. La çekdarê DAIŞ'î pey ra yew lemate çelpneno binê goşê ey ra. Û her hîrêyine uca bi vengê "Allahûekber!" danê fekê guleyan kişenê. Dima fetelînê her hîrê tiran veşnenê û wenişenê pîqaba xo, bi keyfweşî ageyrenê şinê. Heme çî mîyanê des deqayan de beno.

De wina hesab bikin, no vîdeoyo ke ez behs kena, goreyê ê bînan ra kiştişo tewr masum o.

Tena DAIŞ ney, ge-ge grûbê bînî zî vîdeoyan vila kenê. Çend rojî verê cû, mi yew vîdeo dî ke Kobanî de ancîyayo. Badê ke teyareyê DYA mehlayê ke çekdarê DAIŞ'î tede yê bombarduman kenê, çekdarêkê DAIŞ'î bi nameyê Ebdulahdî Muhemed hetanî sîneyê xo binê betonî de maneno. La sereyê ey teber ra yo, nêmireno. Hevalanê ey o war o verdayo remayê.

Êyê ke verî resenê ser, mensubê Şems El-Şîmal yê Tabûra el-Hurrîye ya Artêşa Azad ê ke Kobanê de paştgirîya kurdan kenê. Nînan ra yew çekdar, moloz û betonî wedareno ke çekdarê DAIŞ'î bixelisno.

O mîyan de zî ewnîyeno kamera ra û vano: "No merdim mensubê DAIŞ'î yo ke ameyê ma bikişê. La ma do ey binê betonî ra vejin, bixelisnin û tedawî bikin." Mensubê DAIŞ'î vano "Hevalanê mi ez no hal de verdaya, şî. Homa şima ra razî bo." Peyê kamera ra vengê yewna merdimî yeno, vano, "No dişmenê şima yo, qey ti ey xelisnenî?" Kurdo ke ey xelisneno vano, "Ferqê ma û înan no yo. Ê kişenê ma xelisnenê." Û mensubê DAIŞ'î ra perseno vano "Ti qey ameyî tîya, dê vaje? Biewnî, şima çi ard ma sere! La ma to xelisnenî."

Porê mensubê DAIŞ'î eynî seke tirkî vanê "arap saçı", o qayde yo; gijvar, heme têro alozîyayo. Kurd, destê xo erzeno gijikê eyê ke qasê di vincewî derg bîyo û vano "Ey alem, ey însanîyet. Dê hela biewnîn sîfetê nê merdimî ra. Însan xo wina keno?" Keso ke kamera de nêaseno la vengê ey yeno, vano "Nameyê îslamî ser o qisey kenê la xebera nînan îslamîyet ra zî çin a. Îslam vano, nîfaq demekîn mîyanê muslumanan, însanan seremebirnîn. La nê merdimî kenê, nê terorîst ê..."

Hema ke vîdeo nêqedîyayo, kurd ancî bi destan beton û molozî dareno we, lebitîyeno ke endamê DAIŞ'î tengane ra bixelisno. No sehneyêko heqîqî yê herbî yo. Û helbet zaf zî însanî yo.

Yanî eke merdim însan bo, herb de zî însan o. Eke merdim hov û wehşî bo, helbet demeyê sulhî de zî wina yo. La demeyê herb û pêrodayîşî de eyar ra vejyeno.

## Pêşmerge

Pêşmerge, çekûyanê Pêş (ver, rave) û Merg (merg, marg, merdiş) ra viraziya û êna bi maneya cegker û fedaî.

Bi kilmîye Pêşmerge, fedaîyên welatî yên ke ver bi mergî şonê, mergî rê meydan wanenê" Edi sera 1946'îne de, ke Komara Rojhelatê Kurdistanî awan bîye, pezirnayena (qebûkerdene) marşa Ey Reqîbî û beyraqa neteweyî ra tepîya, wazenê ke nameyêde kurdkî yê leşkerê Kirmacîye kî bibo.

Edi kombîyene de, na bare de cîya cîya pêşnîyazî ênê kerdene. Çaycîyê Qazî Mihemedî Ehmed Desmal, pêşnîyazê m Pêşmerge yî pistneno bi goşê Qazî Mihemedî.

Qazî, pêşnîyazê Desmalî pêşkêşê raya kombîyene keno, û pêşnîyaz munasib êno vînîtene û pezirnayene. A roje ra nat o, ke nameyê leşkeranê Kirmancîye PÊŞMERGE yo.



## Kembera erebî projeya erebkirina Rojavayê Kurdistanê bû

# Ji Dêrîkê heta Behra Spî Kurdistan e

Aziz Tekin

Wek ku tê zanîn li Sûriyê kêmnetewa herî mezin kurd in. Li gor lêkolînvanên bêalî serjimara kurdan li Sûriyê nêzikî 2 milyonan e. Ev jî teqabûlê ji % 10 tevahiya nifûsa Sûriyê dike. Ji hêla din ve hin çavkanî serjimara kurdan zêdetir, hin çavkanî jî kêmtir nîşan didin. Sedemên vê yekê ev in: Rêveberiya Sûriyê ti caran xêjî ereban ti gelên din wek netewe qebûl nekirine û li gor nêrîna xwe jî hewce neditîne ku serjimareke bê alî çêkin. Ya din jî nêzikî 120.000 kes ji hemwelatiyê hatin derxistin ku tevahiya van kesan kurd bûn. Kurdên Rojavayê Kurdistanê bi tevahî zaravaya kurmancî bi kar tînin û gava em bala xwe bidinê em ê bibînin hema hema piraniya van kurdan sunî û hin jî ji wan êzdî ne û li tevahiya herêmê belav bûne.

Belavbûna nifûsa kurdan, ji sêgoşeya Iraq, Turkiye û Sûriyê dest pê dike û di ber sînorê Tirkiyê re berdewam dike heta ku xwe digihîne Behra Spî. Kûrahiya xaka kurdan li hin cîyan 20, li hin cîyan 50 û li hin cîyan jî xwe digihîne 70 kîlometreyî. Li herî rojhelat navçeya Dêrîkê heye ku navê Wê jî hêla dewletê ve wek El Malîkiye hatiye guherandin. Dû re Tirbespiyê (Al Qahtaniya) û Qamîşlo tên. Kurd ber bi başûr ve hatanî Hesekê belav dibin. Ku Hesekê navenda wîlayeta Hesekê ye bi awayekî nîvenîv kurd û ereb lê dijîn. Ber bi rojava ve navçeya Amûdê tê û dû re ber bi rojava ve Serêkaniyê(Res al-ayn) heye ku kurd li vir piranî ne. Ji Serêkaniyê pê ve serdestiya ereban dest pê dike hetanî bajarê Kobanê. Di vê navberê de bajarê Girê Spî (Tel Ebyad) heye Ji Kobanê ber bi rojava ve Serîn û Ezaz tên. Herwiha nifûsa kurdan ji wir berbi Efrîn û çiyayê kurmên ve diherike. Bi Çiyayê Kurmênç ve kurd xwe digihînin Behra Spî. Rejîma Sûriyê xwest ku yekparebûna xaka kurdan ji holê rake û ji ber vê jî projeya kembera ereban derxist holê. Em jî li ser kembera ereban bi siyasetmedar û nivîskarê Rojavayê Kurdistanê Abdulsamet Dawût re axivîn.


Abdulsamet Dawût

**Kembera ereban bi serjimara 62'an destpêkir**

Proja kembera erebî ji hêla rejîmê ve ji zû ve hatibû plankirin. Lê di pratîkê de bi serjimara 62'an dest pê dike. Di 5 Cotmeha sala 1962'an de serjimarek çêbû û ev serjimar tenê li herêma Cizîrê pêk hat. Ji ber ku tenê serjimar li herêma Cizîrê pêk hat bû û diyar bû ku ev di çarçoveya planekê de ev hatibû kirin. Dawût derbarê vê serjimarê û planên rejîma Suriyê de wiha got: "Her kesî dizanibû ku ev serjimar bo hin planan hatibû kirin. Ji xwe serjimar di rojekê de hate kirin û kesên ji hemwelatiyê dê bên derxistin jî diyar bûn. Kesên ku dikaribûn bertîlan bidin wezîfedaran xwe xelas dikirin. Bi vê serjimarê nêzikî 150 hezar kurd ji hemwelatitiya Suriyê hatin derxistin. Ji kesên ku ji hemwelatikiyê hatin derxistin re gotin: "Hûn biyanî ne. Hûn ji Tirkiyê hatine vir û divê vegerin Tirkiyê."

Piştî ku ev kurd ji hemwelatitiyê derxistin, erdên di destên wan de jî ji wan hat wergirtin. Kesên di dewletê de wezîfedarbûn jî kar hatin dûrxistin û kesên di artêşê de fermandar bûn jî karê wan jî destê wan hat standin. Tiştine ewqas ecêb hatin kirin ku kesên nexweş nedikaribûn biçûyana nexweşxaneyan û nedikaribûn li otêlan bimana. Helbet bi dehan sedemê vê 'biyanîkirinê' hebûn lê di serî de valakirina herêma kurdan dihat. Ew bi van biryaran heta astekê bi ser ketin û gelê li wir mecbûr kirin ku ew bazdin herêmên din ên Sûriyê an jî welatên din.

Gava ku meriv dewletên ku xaka kurdan dagir kirine dide ber hev dibîne ku dewleta Sûriyê vê projeya 'pişaftina kurdan', 'valakirina xaka kurdan' û 'ciguhestina kurdan' piştî dewletên din daye destpêkirin. Ango bi awayek din meriv dikare bibêje ku dereng maye. Di salên 1935'an de Hikûmeta Iraqê, gelek êlên erebên başûrê Iraqê anîn û li Kerkûkê bi cî kirin. Erebkirina Kerkûkê jî ji wê demê ve dest pê dike. Ku meriv li sedemên erebkirina Kerkûkê û Cizîrê dinêre, tiştên nêzî hev derdikevin pêşberî me. Herdû herêm jî ji hêla neftê û candiniyê ve dewlemend in. Li bakur jî bi dehan gundên kurdan piştî serhildanan hatin kavilkirin, bi hezaran kurd ber bi rojavayê Tirkiyê ve hatin koçkirin. Di ber re jî hin gundên tirkan di nav gundên kurdan de hatin avakirin.

Bi xweşî bi biratî û bi başî. Rêyeke din nîn e. Ew xak, xaka Kurdistanê ye û divê li kurdan were vegerandin.

Dawût li ser projeya kembera erebî wiha dibêje: "Di sala 1958'an de dema yekîtiya Misir û Sûriyê hat avakirin û Cemal Abdûlnasir bû serokê dewletê, şovenîzma ereb zêdetir bû. Di wan deman de yekem partiya kurdan, Partiya Demokrasiya Kurdistana Sûriyê (PDKS) bû. Şovenîstên ereb bi tûndî li hember vê bûyerê derketin û bi dehan berpirsiyarên partiyê bi salan hatin girtin. Beriya kembera ereban li Kurdistanê 10 gundên ereban hatibûn avakirin. Ev ne di çarçeveya kembera erebî de bû lê 10 gund li ser çemê Xabûrê hatibûn avakirin. Van ereban ji parêzgeha Suweyda hatibûn vir."

**Nasname ya du milyon kurdan hat stendin**

Piştî ku projeya kembera ereban hat destpêkirin di navbera salên 1961-71'an de du milyon xaka dewlemend ji destê kurdan derket û dewletê dest danî ser. Ev xaka dewlet êdest danîbû ser ji Dêrîkê ku herî rojhelata Kurdistana Sûriyê ye dest pê dikir hetanî rojavayê Serêkaniyê. Dirêjiya vê xetê bi ber sînor ve 275 kîlometre bû û di navbera 10 û 20 kîlometre ber bi hûndir ve fireh dibû. 335 gundên kurdan ên ku diketin ber vê xetê ji kurdan hatin standin. 150 hezar gundiyên li vê derêdijiyan bê cî û war man.

Dawût bi awayekî henekî û mixabinî dibêje ku kurdên gundî destê wan di tengala wan de bi neçarî ji dûr ve li xaka xwe ya ku tirba kalikê wan li wir bu dinêrîn û wiha berdewam dike: "Ji van du milyon erdan milyonek donim dan elên ereban . Milyonek jî dan leşkerên payebilind. 40 gundê modern bi elektrîk, rê û bi av ava kirin. Gundê kurdan li kêleka wan bê av û bê elektrîk bûn. Di her gundî de sed mal hebû û cendirme jî didan cem wan, di ser de jî sîleh didan wan. 175 km dirêjiya van gundan heye. Van gundan ji hev di navbera 3 û 5 km dûr in. Ji sînor ber bi hundir ve jî 5 heta 7 km kûrahiya wan heye. Em jî wan re dibêjin Mustaltana. Mustaltana ji gundên beyaniya re dibêjin ku bi zorê di xaka yekî de hatibe avakirin."

Ev gundên hatin avakirin di navbera 80 û 100 malî de bûn û di navbera 150 û 300 donimî de erd dan van malan. Ji xwe di warê zanistî de jî hat îspatkirin ku xaka herî dewlemend herêma Cizîrê ye û ev xak di nav van êlên ereb de hat pervekirin. Di serî de ji van ereban re gotin ku em erdan ji bo demekê didin we lê dû re tapoya van erdan dan wan. Li gor agahiyên Dawût dide me hetanî sala 1974'an 4 hezar û 600 kes di van gundên nû yê li ser sînor ava bibûn de dijiyan. Di dawiya qonaxa yekem ya kembera erebî de li tevayî herêma cizîrê 40 gundên ereban hatin avakirin. Ji vana 12 heb li Dêrîkê, 12 heb li Qamişlo û 16 heb jî li Serêkaniyê hatin avakirin. Erebên li van gundan hatin bi cî kirin ji deşta Reqqayê û ji Helebê anîn vir. Di 74'an de dema li Raqqayê bendav hat avakirin, kesên ku ji wir hatin tahliyekirin jî anîn herêma kurdan. Ku meriv erdnîgariya Sûriyê difikire, meriv dibîne ku ev biryaran siyasî ne û di çarçoveya hin projeyan de hatine kirin. Ji ber ku bi hezar doniman cîyê vala hebû lê ew li wir nehatin bi cî kirin, anîn di gundên kurdan de bi cî kirin.

Kurdistan bi ve projeyê ji kurdan hat valakirin. Maf maf e, bi demê re kevn nabe. Ev siyaset bû.

**Erdnîgarî û demografiya Kurdistanê hat xerakirin**

Ku meriv li encama kembera ereban dinêre encamên pir girîng derdikevin hemberî meriv; di serî de ji ber van gundan bandora bakur li rojava, bandora rojava li bakur hat birîn û ji ber vê sedemê di warê çandî, hestî de qutbûnek di navbera herdû perçê Kurdistanê de derket holê. Bi awayekî dirêjiya Kurdistanê li ser sînor hat qutkirin ku ji xwe armanca wan ya yekem ev bû. Xaka Kurdistanê ji hêla demografiyê û ji hêla erdnîgariyê ve hat guherandin.

Di wan salan de her rê li ber kurdan hat girtin. Dawût waha behsa dijwariya wan rojan dike: "Erdê çandiniyê nedibû ku li ser kurdan hebe, heman demê de xanî jî li ser wan çênedibû. Ku zarokekî kurdan bihata dinyayê heta çend salan nedihat tomarkirin. Heta sê rêveberiyê dewletê bibêjin erê qeydkirina zarokan dom dikir. Van rêveberiya yek ji yasiyê, yek ya navendî yek jî ya leşkerî bû. Hetanî van negota erê kes nedihat tomarkirin. Ku erebek be di heman rojê de tomar dibû."


Piştî ku li Rojavayê Kurdistanê rêveberî ket destê hêzên kurd û li herêmên kurdan kanton hatin avakirin qutbûna herêmên kurdan li rojava bû kêşeyeke berbiçav.

Helbet erebkirina herêma Cizîrê ne bi tenê ciguhestina kurdan bû, bi her awayî erebkirin hatibû destpêkirin. Ji vana yek jî guherandina navê kurdî yê ciyan bû. Erepkirina navên kurdî di navbera salên 1960-80 berdewam dike. Dawût derbarê guherîndina navan de ev agahiyan dan: "Bi sê qonaxa nav kirin erebî. Bajarek heye li hember Nisêbînê jê re dibêjin Tirbespiyê. Berê mala Haco tê de bû. Navê wî guherandin kirin Quburul Bîx. Yanî tirbe qubur e û spî jî bîx e. Wek ku jî kurmancî vergerandin ser erebî. Ev qonaxa yekemîn bû. Wilo nehiştin û cardin guherandin. Gotin belkî hinek lêkolînê bikin û bi rastiyê bihesin. Di qonaxa duyem de şovenîzma ereban xistin nav navan. Navê Tirbespiyê kirin El Qahtaniye. Qahtaniye mezinek ereban e. Quburul Bix jî qedexe kirin. Piştî 70'yî nav cardin guherandin û kirin El Sawra, El Oruba, Felistîn, El Quts." Bi guherandina navên ciyan, navên kesan jî hatin guherandin. Kurdên li Suriyê wek yê Tirkiyayê nikaribûn bi xwasteka dilê xwe navan li zarokên xwe bikin. Dawût dibêje ku, "Mesela te dixwest navê kurê xwe bikî Azad destûr nedidan. Lê ku bi erebî bûya hêsantir dibû.'

Ev projeya kembera erebî li ser sê qonaxa bû. Ya yekem ji sînor hetanî 20 kîlometre, ya dudiyan bigihînin 40 kîlometre û herî dawî jî bigihijînin 70 kîlometreya û nema kurd li herêma Cizîrê bimînin. Di 1974'an de qonaxa yekem hat qedandin lê piştî 74'an de li başûrê Suriyê şer derket, ew û Lûbnanê bi hev ketin. Rewşa Sûriyê xerep bû, firsend neditin ku derbasî qonaxa duyem bibin. Li ser pirsa me ya ku li herêmê din yên kurdan projeya kembera erebî pêk hat an na, Dawût wiha got: "Li Kobanê û Efrînê gund nehatin valakirin. Erebîkirin li wir hebû lê gund nehatin valakirin. Ku rewşa Suriyê xerap nebûya û merhelê din berdewam bikira dibe ku li van deran jî gund bihatana valakirin. Lê belê sedema yekembûna herêma Cizîrê cîgirtina sêgoşa sê dewletan de tê û erdê wir pir dewlemend e û petrol li wir heye, bêyî wan jî kurahiya kurdnişînan herî zêde li vir bû."

Qonaxa yekem ya kembera ereban di 14 Hezîrana 1974'an de bi dawî dibe. 74'an de bi 10 gundên beriya kembera ereban hatibû avakirin hejmara gundên ereban ya li ser sînor gihiştibû 50 gundan. Dawût dibêje ku, 'her sal di 14'ê Hezîranê de li ser kembera ereban panel û çalakî tên li dar xistin. Ev roj bûye wek roja tekoşîna li dijî kembera ereban.'

Li ser pirsa pêşniyarên wî yê bo çareseriyê Dawût wiha dibêje: "Ev ereban hê di wan gundan de ne û mixabin hê jî berhemên wê dixwun. Kurdên ku ji van gundan hatin derxistin bi tevayî cotkar bûn û neçar man koçî Helep û Şamê bikin. Kurdistan ji kurdan hat valakirin. Maf maf e, bi demê re kevn nabe. Ev siyaset bû. Wan ereban bê war û cî nebû ku anîn kirin vir, ji bo wî dibê li ciyê xwe werin vegerandin. Ji xweşî bi biratî û bi başî. Riyeke din nîn e. Ew xak, xaka Kurdistanê ye û divê li kurdan were vegerandin.

**Heta salên 70'yî li Tirbespiyê (Telebyad) ereb tune bûn**

Ku meriv li rewşa niha ya Rojavayê Kurdistanê difikire di nav herêmên kurdan de valahî an jî herêmên ereban derdikevin hemberî meriv. Ji Serêkaniyê hetanî Kobanê herêmê kurdan qutbûnekê dijîn û her wiha ji Kobanê heta Efrînê û ji Efrînê hetanî Behra Spî.

Dawût van qutbûnên di nav herêmên kurdan de bi guherandina demografîya Kurdistanê ve girê dide û vê mînakê dide: "Kurdistan hat guhertin. Kurd ji ciyê xwe hatin derxistin. Heta 1950'yî Tirbespî(Tel Abyad) gundên Îbrahîm Paşayê Milî bû. Bi tevayî kurd bûn, dû re erep hatin ketin van deran. Li Tirbe Spiyê tenê erebek tunebû heta salên 70'yî. Tirbe Spiyê kirin nîve nîv. Bi vî awayî demografiya rojava xira kirin."

Weke ku tê zanîn di van dawiyan de mijara herî balkêş jî ji bo kurdan xwe gihandina Behra Spî ye. Bi dehan lêkolînan de tê gotin ku kurd xwe bigihînin Behra Spî dahatûya wan wê bê guherandin. Li ser pi girêdana kurdan a bi behra Spî re jî Dawût wiha dibêje: "Behra Spî bi Lazqiyê ve ye. Li Lazqiyê 8 km heta 10 km dirêjahiya gundên kurdan heye li ber peravê Behra Spî. Bi tevayî 80 gundên kurdan li Çiyayê Kurmênç heye û bi saya van gundan kurd xwe digihînin Behra Spî."

## Kembera erebî projeya şovenîzma erebtiyê bû

Piştî ku li Sûriyê partiya Baas hat ser desthilatiyê şovenîzma ereban zêdetir bû. Dawût dibêje ku wê demê li Kurdistanê wek Yahûdîstanê dinihêrîn û digotin, "Em çawa bi Yahûdîstanê re têdikoşin divê em bi heman awayî bi Kurdistanê re jî têbikoşin. Dawût wiha berdewamî da axaftina xwe: "Wê demê serokê parastina Hesekê Muhetap Teleb Hilal bû. Ev Baasî bû û di 61'an de pirtûkek li ser kurdan amade kiribû. Di pirtûkê de planên paqijkirina Cizîrê ya ji kurdan hebû. Helbet tirsa wan hebû û bi lezgînî dixwestin vî karî xwe yê qirêt pêk bînin. " Ku meriv wan salan dinêre sedemên van planan bi zelalî xwûya dibin. Sedema yekem ewbû ku li ber serê Cizîrê şoreşa Mele Mistefa destpêkiribû û li Cizîrê neft hatibû kifşkirin.

Dawût dibêje ku planên di pirtûkê de hatibûn rêzkirin 12 xal bûn û di domîne: "Di xala yekem de gotin ku em dest deynîn ser xaka Cizîrê. Divê em kesên kurd ji vir bidin barkirin û êlên ereb bi cî bikin. Ger ku êlên ereb nebû em êbaregehên leşkerî bixin cîê wan. Gotin ji bo ku em wan bidin koçkirin divê em nasnameyên wan ên fermî jî ji wan bistînin. Herwiha gotin ku ereb li wir bi cî bibin ewê zordariyê li kurdan bikin û kurd jî wê vir biterikînin. Ji bo vê yekê jî rejîmê çek dan ereban. Da ku hemû deriyan li ber kurdan bigrin. Divê em kurdan berî hev bidin. Em emir dikin ji parastina xwe bi vî karê dest pê bikin. Divê em nehêlin bixwînin. Ji ber ku xwandin wan bi wan dihesîne. Ji bo vê yekê jî divê dibistanên bajarên Kurdistanê werin giritin. Em derdora dîndarên kurd teng bikin û wan tengav bikin. Em bibêjin ya wek me bibêjin yan jî derkevin herin"

Welat Baz

## Şarê Nûh:

# Şirnex

Bajarê Şirnexê sînorê Başûr, Bakûr û Rojavayê Kurdistanê digîjîne hev. Bajêr di nav eyaletên Botan, Behdînan, Zaxros û Mêrdînê de jî wek pirekî ye. Rêya hevreşim ku Kurdistan û Tirkiyê bi Rojhilata Navîn ve girêdide, ji ser xaka Şirnexê derbas dibe.

Xeta petrola Kerkûkê jî ji ser vî bajarî dirêjî Îskenderûnê dibe. Bi van taybetiyên xwe Şirnex xwedî bihayekî stretejîk e.

Nawenda bajêr di sêgoşeya quntarên çiyayên Cûdî, Gabar û Nimêjan de hatiye damezirandin.

### Erdnîgar

Bajêr di nav hêlîlarên bakûr ê 40 û 42an û di nav hêlîpanên rojhilat ê 37 û 38an de cîh digre. Nîsbeta xaka Şirnexê 7172 km2 ye.

### Çiya

Erdîma Şirnexê ji bilî Deşta Cizîrê tev çiya ye. Herêm % 75,7 çiya, jî % 24,3 jî zozan û deşte. Li çiyayên Şirenexê heywanên wek teyrên kovî, pez û berazên kovî, qertel, kew, baz û qajik dijîn. Li quntarên Cûdi komir, sifir, asfalt tê derxistin.

Çiyayên Şirnexê herçiqas nebilind bin jî asê ne. Çiyayê Hereqol ku 2838 metre ye, noqta herî bilind e.

Helbet di erdnîgara Şirnexê de çiyayê herî binavûdeng Cûdî ye. Ev çiya xelekekî ji sîlsîla bilindahiyên Kurdistanê ye. Cûdî wolqanekî tefandî ye. Lûtkeyên bilind heta 2114 metreyî dirêj dibin. Li Cûdi noqta herî bilind Girê Çeko ye. Çiya wek elîpsekî ye.

Cûdî ji ber ku di efsaneyên kevn de wek mekana Keştiya Hz. Nûh derbas dibe, di nav gel de pîroz e. Deverên ku di rîwayetên pîroz de derbas dibin li bakûrê Gundê Girêçolya ye. Tê bawer kirin ku bermayiyên keştiyê li vê meydanê ye. Meydan bi qasî 500 m2 fireh e. Navê meydanê 'Sefîne' ye. Sefîne bi Zimanê Erebî tê wate ya 'Keştî'.

Li ciyê ku Keştiya Nûh sekiniye, derbendekî bi navê 'Deriyê Cebraîl' heye. Herwiha li hember vê derbendê şikeftekî bi navê 'Kuna Îblîs' jî heye.

Yek ji lûtkeyên Cûdî bi navê 'Ziyareta Nûh' tê naskirin. Heta sala 1984an jî evder rojê înê ji alî gel ve dihat ziyaretkirin. Efsana tofanê û navê Cûdî di ayetên Quran a pîroz de jî derbas dibe.

### Çem

Çiya û deştên Şirnexê ji alî çem, av û rûbaran ve dewlemend e. Çemên navdar ê Şirnexê Ava Botan, Rûsor, Ava Masiyan, Ava Besta Hincê, Ava Besta Meryemê, Çemê Hêzil, Ava Xebûr û Dîjle ne. Herwiha di nav gelî û çiyayên asê ê Şirnexê de gelek avên biçûk jî diherikin.





Ji Cûdî dîmenek

### Deşt

Li ser erdîma Şirnexê cîhê sererast Deşta Cizîrê ye. Deşt ji biniya Hezexê destpêdike, ji quntarê Cûdî ve ber bi Girgêemo ve dirêj dibe. Ew sînorê Sûrî û Tirkiyê, jî ji hev diqetîne. Dirêjiya deştê 40, firehî jî 10 km ye. Li deştê li keviyên Dîjle û Xebûrê kiştûkala avî, li deverên din jî a bejî tê kirin û berhemên wek genim, ceh, nîsk û pembû tê çinîn.

Erdnîgara Şirnex ji alî hin madenên binerdê ve jî dewlemend e. Li quntarên Cûdî bi milyon tonan rezerwên komirê heye. Li nawenda Şirnexê bi sedan malbat bi derxistina komirê debara xwe dike. Komira Şirnexê salên beri şer zivistanê hemû malan Bakur germdikir.

### Şal û Şapik

Şirnex li Bakûr yek ji bajarên ku jiyana şûnewarî didomîne ye. Taybetiyeke Şirnexî an jî Botiyan, girêdan û cilên wan e. Helbet dema behsa girêdana Şirnexiyan tê kirin, şal û şapik tê bîra mirov. Van kincan ne tenê li Botan her wiha li heremên Behdînan û Zaxrosê jî tên lixwekirin.

Taybetiya şal û şapik qumaşê (bestir) wî ye. Ev bestir li heremê ji sedan sal vir ve di tevnan de tê rîsandin. Benikê bestir ji hiriya saf e. Hirî piştî tê şûştin li ber tavê tê ziwakirin. Paşê gulokên hirî di teşiyan de wek benikên zirav tên rîsandin. Ev benik li dolaban tê lefandin û bi sîhtirîk tê rengkirin. Bi vî awayî tê ber tevnê. Qumaçê şal û şapik havînan hênik, zivistanan jî germin.

Ev qumaşê ku di salên berê de bi taybetî ji alî hosteyên Ermenî û Suryanî ve dihatin rîsandin, her diçe bihaya xwe wenda dike. Niha li Şirnexê çend atolyeyên biçûk tenê mane.

Hostayên şal û şapikan gazin dikin ku wek berê kes van kincan nade girêdan û mirovên pîr tenê li ser adet û kevneşopiyên xwe dimeşin. Xort raxbetê tiştên kevn nakin.

### Kilimên Jîrkî

Dema Şirnex tê gotin, navê klîmên Jîrkî tîne bîra mirov. Klîmên Jîrkî vî bajarî bi cîhanê daye naskirin. Ev klîm li navçeyên Beytuşebab, Qîlaban û nawenda Şirnexê tên rîsandin.

Piştî ku li Kurdistanê şer destpêkir û gund hatin valakirin, tevnên klîman jî bêxwedî man. Niha li çend mal û atolyeyekî Nawenda Şirnexê ev hunerê kevnare di ked û çavên van keçan de didome.

Taybetiyên van klîman desen û motîvê wanin. Ev motîvên ku her yek çîrokekî tîne ziman, bi sedan salên di tiliyên keç û jinên Jirkiyan de dijîn.

**Her çiqas ku Şirnex di sîh salên dawî de bi meseleyên siyasî hatibe nasîn jî, çiya, edet, dîrok û renginiya xwe xezîneyeke kifşnekirî ye.**

Koçerên Kato'yê





Gewiya Qesrîkê



Dîmenek ji Şirnexê

### Rêvebirî

Şirnex li gor pergala rêvebiriyê parêzgeh e. Bi navên Elk (Beytuşebab), Qîlaban (Uludere), Girgêemo (Silopi), Cizîra Botan (Cizre), Findik (Güçlükonak) û Hezex (İdil) 6 navçe û 234 gund û gelek komik bi bajêr ve girêdayîne. Nifûsa Şirnexê tevî navçeyan sêsed hezarî e.

Rûniştvanên bajêr tev Kurdin. Gelê Şirnexê bi Zarava Kurmancî diaxife û ji Mezheba Sunî ye.

Heta salên 1990an li Navça Beytuşebabê çend gundên Keldanî hebûn. Keldaniyên Elkê ji ber zextên rejimê koçî Awrûpa û metropolan kirin. Li Navça Hezexê jî çend malbatên Suryanî hene. Piştî destpêka şer bi dehhezaran Şernexî jî koçî metropolan an jî Awrûpayê kirin.

Şirnex, li rojhilat cîranê Colemêrgê, li bakûr cîranê Sêrtê û li rojava jî cîranê Mêrdînê ye. Bajêr li başûr jî cîranê Dêrika Rojavayê Kurdistanê û Zaxo ya Başûrê Kurdistanê ye.

### Nav

Li gor riwayetên pîroz navê Şirnexê ji peyva 'Şarê Nûh' tê. Katîp Çelebî ku di salên 1700an de li heremê digere, di seyahetnama xwe dibêje çavkaniya vê gotinê Tofana Hz. Nûh e. Heman rîwayet di nivîsarên şaristaniyên Gûdî, Babîl û Asûriyan de jî derbas dibe.

Li gor efsanê, Keştiya Nûh piştî ku tofan dadikeve, li ser Çiyayê Cûdî disekine. Sakînên keştiyê yekem car li bakûrê Çiyayê Cûdî li bajarê Şirnexê bicîh dibin û vê derê wek 'Şarênûh' binavdikin.

Di demên dawîn de ev peyv di nav gel de wek 'Şirnex' hatiye bilêvkirin. Tirk jî ji bajarê dibêjin; 'Şırnak.'

### Dîrok

Xaka Parêzgeha Şirnexê di dîrokê ji gelek şaristaniyan re peytextî kiriye. Peytexta dewleta Babîlê a yekem ku ew jî wek Babîl tê zanîn, di nav sînorê Navça Cizîrê, Gundê Kebelî bûye. Dîsa peytexta Împaratori ya Gûdî ku navê wê 'Bajarkard' bûye, di nav sînorê Sîlopiyê de ye.

Li gor bermayiyên ku ji kolanên arkeolojîk hatine derxistin, li Botanê bi hezaran sal berê jiyana şaristanî destpêkiriye. Di dîroka niviskî de 4 hezar sal b.z li deverê rêçên Şaristaniya Gûtiyan hatiye tesbitkirin.

Piştî Gûtiyan 2 hezar sal şûnde pêşiyê Babîlî û paşê jî Asûriyan li Botanê hukum ajotine. B.z di salên 612an de herem dikeve destê Medan û piştî 150 sal, Persî dikevin heremê. Paşê Artêşa Îskender, Selefkosî, Kelt, Part û Sasanî bi dorê li heremê hukum dajon. Û p.z di salên 600an de jî Artêşa Ereb a Musluman li Botanê ye.

Piştî belavbûna Îslamê bi dorê Emewî, Abbasî, Selçûqî, Artûqî û Zengî dikevin Botanê. Di sala 1260an de jî dema Mîrên Ezîzan destpêdike. Di vê demê de Cizîr peytexta vê hukumdariya kurd e. Di vê navberê de Aqqoyinî û Osmanî heremê bi xeracê ve girê didin. Heta serhildana Mîr Bedirxan a sala 1840an, Şirnex, Cizîr û derûdorê bi destê mîrên kurd tê birêvebirin.

Ji ber ku bi dehan şaristanî û împaratorî li Botanê bicih bûne ev herem di warê çandî û olî de bûye nawendeke pirreng. Di dema Selefkosiyan de li Botan û heremên cîran ola Îsewîtî jî belav bûbû. Heta wê çaxê gelê Botanê Zerdeştî bûn. Di dema Selefkosiyan li heremê gelek jî keldanî hebûn. Herwiha heta salên dawîn li bajêr hin malbatên ermenî jî hebûn. Îro pirên van rengan asîmîle bûne û kurdî diaxifin.

### Mîrnîşîna Botanê

Li Herema Botanê şerê navbera Mîrnîşîna (Botanê) Bedirxan Beg û dewleta Osmanî a sala 1841'an di dîroka Kurdistanê de rûdanekî balkêş e. Bedirxan ku dibe mîrê heremê, li Botanê hukumdariyekî serbixwe rastdike. Mir û begên cîran lihev dicivîne û ji Osmaniyan diqete. Piştî salên 1840'an artêşeke xurt çêdike, li ser navê xwe xutbe dide xwendin û pere dide çapkirin. Mîr Bedirxan tixûbên dewleta xwe ji Urmiye heta Amedê fireh dike. Di sala 1846'an de Osmanî artêşekî mezin dişînin ser dewleta Botan. Di şerên pêşîn de hêzên kurd Artêşa Osmanî jihev belav dikin. Yezdan Şêrê xwarziyê Bedirxan, ku di şer de fermandarê nawendî a Artêşa Botanê bû, bi dizî bi Osmaniyan re lihev dike û derbasî refên wan dibe. Di encam de hêzên kurd têk diçin û Bedirxan di kela Dihê de tê girtin. Mîr Bedirxan piştî sirgûna Girava Girîdê tevî malbata xwe koçî Şamê dike û di sala 1870'an de li wê derê diçe ser dilovaniya xwe.

## Tofana Nûh û Şirnex

Li gor mîtolojiya pîroz Bajarê Şirnexê, Cizîr û gundê Heştan, piştî tofana mezin ji alî Hezretî Nûh û zarokên wî ve hatine avakirin. Di rîwayetan de tofan wiha derbas dibe: Dema ku mirovahî serapê ketiye nav gunehan, dinya bi zilm û xirabiyê lewitiye. Nûh kesekî oldar e. Di xwewna xwe de yezdan dibinîne. Ew fermana çêkirina keştiyekî dide Nûh. Divê Nûh ji her cisnekî jîndar ê nêr û mêy cotekî bigre keştiya xwe û tevî însanên bawermend, têkeve keştiyê û derî û paceyan bigre. Wê tofanekî mezin rabe û rûyê erdê ji guhehkaran pakij bike.

Nûh piştî vê xwewnê keştiyekî mezin çêdike û tiştê jê hatiye xwestin dike. Paşê tofan radibe û bi rojan dajo. Erd di bin avê de dimîne. Li rûyê cîhanê tenê rêwiyên Keştiya Nûh zindî mane. Keştî bi rojan li ser avê disekine. Tofan radiweste. Piştî demekî keştî li cîhekî asê rûdine û av her diçe vedikişe. Ev der lûtkeyên Çiyayê Cûdî ye. İnsan û lawir û nebatên ku ji keştiyê peyadibin, li derûdara vî çiyayî belavdibin. Li gor efsanê di Keştiya Nuh de 80 kes hebûne. Piştî ku ew ji keştiyê peya bûne Gundê Heştan avakirine. Gundê ku heta salên dawî şên bû, di sala 1992an de ji alî leşkeran ve hat şewitandin.

## Komkujiya Sînemaya Şehrezad

# Zarokên Sînema ya Amûdê dijîn

Heta niha li ser bûyera Amûdê gelek çîrok, nivîs û helbest hatine gotin û nivîsîn. Derbarê qurbaniyan de reqemên ji hev cuda hatin dayîn. Gelek kes hatin tawanbarkirin...

Karesata Sînema Amûdê birînek xedare di nav rûpelên dîroka gelê Rojavayê Kurdistanê de. Roja 13ê Mijdara 1960'î midurê(berpirsê rejîma Bees) nehiya Amûdê, ferman dide mamosta û midurên mekteban ku yekser xwendevanên bajêr bibin sînemayê.Midur û mamosteyên mekteban zarok bêgav kirin ku herin li sînemayê bicivin. Bi civandina xwendevanan dixwestin arîkariyê ji bo şoreşa Cezaîrê bidin hev.

Ji her sê mektebên Amûdê Xezalî, Mutenebbî û Emar bîn Yasir û ji gundên der dorê zarokên ku temênê wan di nav 7 û 14 salî de bûn, li sînemê ji bo filmê Şevreşkê Nîvê Şevê (Cerimet nisif el-leyl) dicivînin. Film, ê derhênerekî Misrî Mahmûd el Milêcî bû û qala serpêhatiya Cezair û şoreşa wê dikir. Her zarok wereqeyek Sûrî xistibû berika xwe û çûbû sînemê. Cihê ku zarok lê civiyabûn tenê têra 100-120 zarokî bû, lê rêvebiran nêzî 250 zarokî li sînemê bi cih kiribûn.

### Şewata Sînemaya Amûdê

Sînema, ji cihekî biçûk û bi selihandina xaniyekî xerabe hatibû holê. Dîwarê wê ji kelpîç û banê wê jî ji dar û qerşikan hatibû çêkirin. Li ser dîwarê sînemayê ji bo ku kes ji derve serê xwe bilind nekin û li filman temaşe nekin çewal û bermîlên bi don hatibûn danîn. Di nava sînemayê de şibakeyek û du derî ku ji hindurû ve vedibûn hebûn. Roja şewatê mekîneya sînemayê, cara çaran bû ku film dubare dikir û germ bibû. Xwediyê sînemayê Ezomako (Ezîz) ji midurê nehiyê re dibêje mekîne gelek germbûye û ev yek xeter e. Lê midur guh nade gotina wî û dibêje “tişt nabe”.Ezomako jî mekîneya sînemayê dide sekinandin û zarok dest bi temaşekirina filmê xwe dikin.

Hêj demeke dirêj derbasnabe ji ber germbûnê, agir bi mekînê dikeve û ji mekîneyê jî digire nava sînemayê. Zarokên ku bi agir dihisin hemû bi hevre hewl didin ku derkevin derve xwe li derî didin. Lê mixabin ji ber ku derî ji hindurû ve vedibû li ber derî asê diminin. Hinek zarok jî dixwazin di şibakeyê re derkevin da ku xwe ji şewatê xelasbikin, lê di binê şibakeyê de jî bîr heye. Yê ku xwe ji şibakê davêje derve dikeve binê bîrê. Di wê bîrê de jî gelek zarok difetisin.





> **Karesata ku Kurdistaniyên çar parçeyan di nava êş, azar û kulên bêhampa de hişt û di dîroka welat de bû birîneke ku her xwîn jê diçe**

### Rola Mihemedê Seîd Axayê Deqorî

Seîd Axayê Deqorî bi eslê xwe ji eşîra Celalî ye.Piraniya eşîrê li derdora bajarê Wan û Colemêrgêye . Lê ji ber ku demeke dirêj di nav eşîra Hebizbiniyan de mane xwe wekî Hebizbinî dibînin. Mihemedê kurê Seîd Axa roja şewata Amûdê ew û hinek hevalên xwe li sûka Amûdê rûniştî ne. Deng bi bajêr dikeve ku sînema şewitiye. Mihemed Axa zane ku kurêwî Fehed jî çûye sînemayê. Bi lez û bez ber bi sînemayê ve diçin cihê bûyerê. Di rê de rastî kurê xwe tê. Kurê wî jê re dibêje bavo ez ji şewata sînemayê xelas bûm. Mihemed Axa dibêje: " Hemû zarokên Amûdê yên min in" û diçe devê sînemayê.

Polêsên nobedar yên devê sînemayê nahêlin Mihemed Axa derbasî hundur bibe. Ew li polêsan hêrs dibe û dahfê dide wan.Mihemed Axa li hemberî deng û sewtîna zarokên di nav agir de xwe nagire û dikeve nava sînemayê. Hêj destpêka agir bû û pêtiyên wê her diçû gurtir dibû. Wekî şêrekî xeyidî û teyrekî bazî ku xwe berde ser nêçîrê, êrîş bire kûrengiha agir ta ku gihîşt zarokan.

Bi vî awayî êrîş li ser dû êrîşê ta ku 14 zarok ji kûrangiha mirinê, ji nav dojehê anîne der. Lê di êrîşa cara dawîn de agir digire cil û canê wî. Hesinê giran û darên banî yên bi agir bi ser wî û zarokên mayî de hildiweşe. Hedan neket canê wî ta ku bû qurban ji bo zarokên xwe, zarokên Amûdîyan. Ew bejna ku 1,80 cm e, piştî şewatê metreyek dimîne. Gelek zarokên sînemayê ji ber şewatê nayên naskirin û hinek ji wan dudo dudo û sisê sisê dixin mezel.

### Bûn qurbaniya şoreşa Cezayîr

Wê demê dewleta Cezayîr di bin desthilatdariya Fransiyan de bû. Ji bo ku arîkariya şoreşa Cezayîr bikin, rejima Bees li temamê Sûrî qampanya dabû destpêkirin. Ev zarokên Amûdî heta roja şewata sînemayê ne navê Cezayîr bihîstbûn û ne jî nexşeya wê dîtibûn. Ew zarokên ku haya wan ji bayê felekê tunebû bibûn qurbaniyên şoreşa Cezayîrê. Wî wextî hejmara şêniyên Amûdê li dora 15-17 hezaran bû. Ji bo piraniya xelkê Amûdê wê demê Kurd bûn, piranî zarokên kurdan şewitîn.Di nav kesên şewitî de zarokên Ereb yên Xatûnî jî hebûn.

### Rastiya iddiayan

Li gorî hin iddiayên ku hatine gotin û nivîsîn hejmara zarokên li sînemayê wekî 350 - 450 kesî û zarokên kuştî jî wekî 300 kesî dane nîşandan. Ev hejmar ne rast in. Ev yek bi awayê fizîkî jî negengaze ji ber ku 350 zarok li cihekî 100 (m2) de bi cih nabin.

Dîsa li gorî hin kesan bûyer wekî ku bi pîlan hatiye kirin iddia dikin. Ev yek jî ne rast derket lewma di bûyerê de ne tenê zarokên kurdan yên ereban jî mirin. Hinek zarokên polîs û rêvebirên nehiya Amûdê û xizmên xwediyê sînemê Ezomako jî di nav wan de hebûn.

Yek ji xelkê Amûdê parêzer Hesen Direyî, piştî bûyerê bi şexsî lêkolîneke berfireh û objektîf dike. Bi gelek kesên mexdûrên sînemaya Amûdê re rûbirû dipeyive û yek bi yek qeydiyan digire. Li gorî lêkolîna Hesen Direyî hejmara zarokên ku di sînemayê de şewitîne 204 kes in û bûyer ne ji qestî û bi zanebûn û ne bi pîlan hatiye kirin. Lê xemsarî û îhmalên mezin hatine kirin û ji bo bûyerêjî tu bergirî nehatiye girtin...



## Şerafettin Elçi

# Lehengê kurd û qasidê Rojhilat

Abdulhekim Günaydın

Ew ji hêla rewşenbîr û aqilmendên tirkan ve wekî qasidê kurdan hatiye qebûlkirin. Loma jî jê re gotine “Doğu'nun Elçisi”, yanî Qasidê Rojhilatê. Mebest ji Rojhilatê jî helbet Kurdistan e. Ew bi giranî û ciddiyeta xwe ji hêla dîgeran ve jî bi hurmet hatiye pêşwazîkirin. Zanîn û eqliyeta wî kiriye ku dijberên wî jî rêzê li ber bigirin. Şerafettin Elçi, têkoşîna ku hêj di ciwaniya xwe de dest pê kiriye, heta nefesa dawîn a umrê xwe jî terk nekiriye. Di rêya xizmeta welat û xelkê xwe de ruhê xwe teslîm kiriye.

### Li ser rêya xizmeta xelkê

Adara 1938an Cizîra Botan hatiye dinyayê. Li paytexta mîr û Şahan, cihê ilm û zanînê mezin bûye. Welatê Medresa Sor û Birca Belek. Dibistana seretayî û navîn li Cizîr û lîse jî li Mêrdînê qedandiye. Di telebetiya xwe de dest bi xwendina kitêbên kiriye ku mamostayên wî pêşniyar kirine. Hişmendiya neteweyî hêj wan çaxan şîn dibe. Piştre li Zanîngeha Enqereyê beşa hiqûqê qeydiya xwe dike. Hê di telebetiya xwe de dibe yek ji Doza 49an û tê binçavkirin. Bi vî awayî demekê girtî dimîne.

Sala 1964an ji zanîngehê mezûn dibe. 12ê Adara 1971an di nava tawanbarên PDKT li Dadgeha Leşkerî ya Diyarbekirê tê darizandin û 8 mehan li girtîgeha leşkerî girtî dimîne. Piştî ji girtîgehê derdikeve biryar dide ku êdî tevlî karên derqanûnî nebe û hemû tekoşîna xwe bi rêyên yasayî bike. Diçe Cizîrê dest bi karê parêzeriyê dike. Di hilbijartina parlementeriyê ya sala 1977an de wekî parlementerê Mêrdînê tê hilbijartin.

Di hukûmeta 1978-79an de wekî wezîrê avedaniyê (Bayındırlık) peywirê digire. Dema dibe wezîr dergehê wezaretê ji Kurdan re vedike û nêzî 20 hezar kurdî wekî memûrên dewletê digire kar. Ne tenê li wezareta avedaniyê li wezaretên din jî kurdan digire kar. Rê li ber mitehîdên Kurd yên sektora înşeatan jî vedike. Bi vê awayî wezîrtiyeke çalak dimeşîne û ji xizmeta xelkê xwe perwa nake.

### Qasidê Rojhilatê (Doğunun Elçisi)

Ew yekemîn kes e ku di parlamentoya Tirkiyê ji kurdbûna xwe fedî nekiriye û ev bi dengekî bilind aniye ziman. Hêj wextê karê wezîrtiya xwe didomîne dibêje: "Li Tirkiyê kurd hene û ez kurd im."

Li ser vê gotina wî, çelqînî bi Tirkiyê dikeve. Ev jî dibe sedem ku partiyên nîjadperest rexneyên tûj li hikûmetê bigirin. Hem ji ber qeyrana aborî û hem jî ji ber axaftina Elçi hikûmet hildiweşe.

Piştî darbeya Leşkerî ya 12ê Îlona 1980ê dadgeha Enqereyê, Ji ber wê axaftina wî 2 sal û 3 mehan ceza didinê. Dîsa bi tawanbariya ku di dema wezîrtiya xwe de kurd kirine xwedî kar û bo karê fermî hilgirtiye ji hêla Dadgeha Bilind ve tê darizandin. Li ser van îddiayan bi tevahî zêdeyî 30 mehan di girtîgehê de dimîne. Herwiha 10 salan siyaset ji bo wî tê qedexekirin û karê parêzeriyê bi fermî jê tê sitendin.

Lê ew ji hêla mafnas, mirovdost, azadîxwaz û demokratan ve bi germî tê pêşwazîkirin. Kesên wiha xwedîtiyê lê dikin. Ji ber vê helwesta wî ya zelal û bêtirs nêzîkatiyê pê re datînin.

Herwiha ji ber ku bi wêrekî mafê kurdan parastiye jî ew wekî qasidê kurdan qebûl kirine.

### Rewşenbîrekî aqilmend û şareza

Sala 1992an bi 98 rewşenbîrên Kurd re “Weqfa Azadiyan a Gelê Kurd” ava dike û dibe serokê damezrêner. Lê ji bo ku di navê weqfê de peyva “Kurd” derbas dibe rayedarên dewletê pirsgirêk derxistine. Hem ji ber xwedîlêderketineke xurt û hem jî bi saya zextên Ewrûpiyan, rayedarên Tirkiyê vî navî qebûl dikin. Lê navê weqfê wekî “ Weqfa Lêkolîn û Çanda Kurdan” tê guherandin. Ev di dîroka Komarê de yekem car bû ku navê peyva” Kurd” bi awayekî fermî pesend bûye û hatiye qebûlkirin.

Dîsa sala 1994an bi hin hevalên xwe re “Platforma Kurd a Demokratik” saz dike. Piştre di Çileyê 1997an de Partiya Girseyî ya Demokratik (Demokratik Kitle Partisi) ava dike û dibe serokê damezrêner. Lê partî ji hêla Dadgeha Distûrê ve ji ber naveroka wê tê qedexekirin û di 26ê Sibata 1999an de tê girtin. Di 19ê Kanûna 2006an de dîsa bi hevalên xwe re partiyeke bi navê Partiya Demokrasiya Beşdar (Katılımcı Demokrasi Partisi) ava dike û dibe serokê partiyê.

Der barê meseleya kurd û Kurdistanê de, hem wekî siyasetmedar û hem jî wekî rewşenbîrekî Kurd, li Tirkî û li gelek welatên Ewrûpa tevlî civîn, semîner û sempozyûman dibe. Jar û bindestîya kurdan bi alema dinyayê daye zanîn. Her demê mafê kurdan e tebîî parastiye û ji bo vê bedel daye.

### Parlementerê serbixwe û koça li ser berxwedanê

Piştî ceribandina gelek rêyên siyasetê di hilbijartina 12ê Hezîrana 2011an de di bin banê “Eniya Ked, Demokrasî û Aştiyê” de ku BDPê jî piştgirî dida wekî namzedê Diyarbekirê hate hilbijartin. Piştî 34 salên borî dîsa kete parlamentoyê. Lê êdî ne weke berê bû. Di nav salan re diçû û nexweşiyê dest jê bernedida. Dawîna dawîn ji ber nexweşiya penceşêrê 25ê Kanûna 2012an li nexweşxana Medicana Internationala Enqereyê di 74 saliya xwe de koça dawîn kir.

Cenazeyê wî pêşî birin Diyarbekir3e û ji wir jî birin Cizîrê, warê bav û kalan. Bi 100 hezaran kes tevlî merasima cenazeyî bûn. Tabût bi ala rengîn hate xemilandin û li ser milan, li goristana Cizîrê hate definkirin.

Di doza mafên kurdan ya heqdar de, li hember zordar û dagirkeran ticarî serî netewand û berxwedanek bêhempa meşand. Xebatên xwe yên welatparêziyê di şertên gelek zor de meşand. Ew dost û piştgirekî xurt yê tevgera her çar parçê Kurdistanê bû. Mirina wî zû bû lewma hêj gelek kar û xebatên ku bikirana hebû. Lewra wî zû terka Kurdistanê, malbat û hevalên xwe kir û di civata şehîd û serokên Kurdistanê de cih girt.







## Têbiniyên dîrokî

# Destnivîsên kurdî di arşîvên Elmanya'yê de


Mehmet Gültekin

Pêywendiyên di navbera miletên rojhilat û rojava de ji kûraniya dîrokê pêve li ser bingeha bazirganiyê û ji ber şer û aşitiyên ku dem bi dem diqewimîn pêkhatine. Welatên Avrûpayê ji nîvê sedsala 18'an pêve di warê aboriyê de gelekî pêşde ketin û pê re jî beşên zanistiyê yên piralî jî berfirehtir bûn. Di pêvajoya vê pêşketinê de zanyarên welatên Awrûpa û Rusyayê dest bi lêkolînên dîrok, ziman, wêje û etnografya gelên rohilatê kirin ku peydakirina destnivîsên kevn jî beşeke hewcedar ya van lêgerînan bû.

Zanyarên rojavayê di nîvê yekem ya sedsala 19'an de bi piranî li ser wêjeya nivîskî ya bi zimanên farisî, erebî û osmanî rawestiyane û di nîvê duyem de jî dest bi lêkolînên kurdî kirine. Ji welatên ku tê de herî zêde destnivîsên kurdî hatine lêkolîn û arşîvkirin yek Rusya û ya din jî Almanya ye. Helbet di arşîv û pirtûkxaneyên Tirkiyê, Îranê û hin welatên Ereban de jî gelek destnivîsên kurdî henin, lê ew bi piranî ne li ser navê pirtûk û nivîskarên wan û ne jî wek destnivîsarên kurdî hatine tomar kirin. Ev yek jî peydakirina wan dijwartir dike û ji ber vê jî em pênizanin ka gelo di arşîvên van welatan de çiqas û kîjan berhemên qedîm ên kurdî henin.

Destnivîsên ku di wê heyamê de ji aliyê rohilatnas û seyahan de li Kurdistanê hatine peydakirin di zanîngeh û akademiyên welatên Awrûpa û Rusyayê de hatine tesnîf kirin, lêkolîn û şirovekirin û di arşîv û pirtûkxaneyan de parastin.

Hemû destnivîsên kurdî yên ku ji aliyê balyozên Rusyayê Aleksandre Jaba li bakûrê Kurdistanê û Nikolay Chanikov li rojhilatê di nîvê vê sedsalê de hatibûn berhevkirin li St. Petersburgê hatine arşîvkirin. Piştre Margarita Rudenko bibliyografyeke van destnivîsan amade kiriye ku tê de bi sedan destnivîsarên wêjeyarên kurd cîh girtine. Rudenko di pêşgotina wê de dinivîse ku ji sê paran du par ên destnivîsan tevkariya Aleksandre Jaba û Mela Mehmûd Bazîdî hatine berhev kirin û parek jî ji yên W. Velyaminos Zernov, Prof. B. A. Dorn û kesên din pêktê.

Zanyarên elman jî ji sala 1850'an heta destpêka sedsala 20'an gelek destnivîsên kevn ên kurdî berhevkirine. Erdnîgarnas August Petermann di salên 1850'î de hin destnivîsên kurdî anîbû Elmanya'yê. Rohilatnas Eduard Sachau di salên 1870-1880'an dema lêkolînên xwe yên li Suriyê û Mezopotamyayê de berhevokek berfireh ji destnivîsên kurdî peyda kiribû ku ew jî gelek nimuneyên ziman û wêjeyê pêktên. Sachau her weha li Musilê Mem û Zîn a Xanî bi ser zimanê erebî dabû wergerandin û ev nimûne jî anîbû Almanya. Oskar Mann ê rohilatnas berhevokeke dewlemend ya destnivîsên kurdî di salên 1901-1907 li rojhilatê Kurdistanê peyda kir ku piraniya wan destnivîsan bi zaravayên Mukrî û Goranî hatine nivîsîn. Her weha rohilatnas Albert Le Coq jî di salên 1901-1902'an de hin destnivîsên gelek giranbiha ji Suriyeyê anî Almanya.

Ji destnivîsan ya herî kevn a Nûbihara Ehmedê Xanî ye ku ji aliyê Albert Le Coq de hatibû peyda kirin. Tarixa vê destnivîsê sala 1079'an, ango du sal piştî mirina Xanî û ji aliyê yekî bi navê Salih li Xîzanê hatiye amadekirin. Di noteke li ser pirtûkê de Salih dinivîse ku wî ev nûshe bi ser daxwaza Mela Xalid di medresa Dawudî li Xîzanê nivîsiye.



Ev berhevokên li Elmanya bi piranî bi alfabeya erebî-farisî û bi zaravayên kurdî wek kurmancî, mukrî û goranî hatine nivîsîn. Gelek balkêş e ku beriya sedsalan berhemên hin şairên kurd jî zaravayên wan ên resen bi ser zaravayeke din hatine wergerandin.

Em ji van destnivîsan agahdar dibin ku parek ji helbestên hin şairên me beriya 150-200 salan bi ser zimanên erebî, farisî û tirkî jî hatine wergerandin.

Dîsa hêjayî destnîşankirinê ye ku ji hemû klasîkên me bêhtir berhemên Xanî yên wek Mem û Zîn û Nûbihar, dîwana Melayê Cizîrî û Şêyxê Senanyan a Feqiyê Teyran hin beriya sedsalan li her aliyê Kurdistanê de belav bûne, wisa ku rohilatnasan karibûne destnivîsên van pirtûkan li hemû herêman peyda bikin.

Di xebata Dr. Kemal Fuad a akademîk "Destnivîsên Kurdî" ji sala 1970'an de para zêde ya destnisarên li Elmanya cîh girtine. Ev xebat ji 92 qeydan pêktê û parek ji wan baqek e ji gelek lê hin ji wan ji yekî zêdetir berheman pêktê. di nav xwe de ji gelek destnivêsên cuda pêktên, wek mînak destnivîsa hejmara 6'an ji 13 nimuneyan û ya hejmara 23'an ji 4'an. Hinek jî ji gelek pirtûk û helbestan pêktên, wek hejmara 52'an ji 7 pirtûkan û 10 helbestên, her weha ya hejmara 53'an jî ji 11 helbestên şairên cuda.

Para mezin ya destnivîsan bi zaravayên soranî û goranî hatine nivîsîn ku ev li başûr û rohilatê hatine berhevkirin. Hejmara şair û nivîskarên van berhemên destnivîs yên li Elmanya dijihêje dora 110 an ku ev jî nişana gencîneyeke gelek dewlemend e. Parek nivîskar û navên van berheman ne li seranserê Kurdsitanê lê di herêmên xwe de navdar bûne, sedem jî kêmasiya derfetên wê serdemê bûn. Lê mixabin piraniya van berheman hin jî nehatine lêkolîn û bi alfaba latînî çap nebûne, ji ber vê jî xwendevanên ku alfaba erebî nizanin jî naveroka van kitêb û helbestan agahdar nîn.

Di mîratên hin zanyar û seyahên berê yên alman de hin zêdetir nimûneyên destnivîsên kurdî henin ku ew heta niha nehatine ronahî kirin. Weke mînak Aleksandre Jaba di salên 1879-1881'an de ji Prof. Ferdinand Justî re hin destnivîsên Mela Mehmûd jî şiyandbû ku Justî parek ji wan tev wergera fransizî çapkir û çendên mayîn jî hin nehatine weşandin. Her weha di sala 1857'an de Peter Lerch dinivîse ku di destê rojhilatnasê zanîngeha Berlinê Prof. Dr. Richard Gosche de destnivîseke Nûbiharê hebûye, lê belê vê destnivîsê piştre di nav lîsteya destnivîsîn li Berlînê de cih negirtiye.

Ji bilî van hemû destnivîsên di warê helbestên şairên klasîk û yên gelêrî, destan, stran û çîrokên kurdî yên ku di pirtûken zanyarên wek Prym, Albert Socin, Hugo Makas û yên mayîn de cîh girtine jî dikevin nav beşa destnivîsan û hêjayî lêkolînê nîn.

Bi serde xwendevanên ku alfaba erebî-farisî nizanin jî hêjayî û kûraniya gelek ji van berhemên lîrîk ên giranbiha bêpar in. Ango hemû ev berhemên ku di arşîvan de heta roja îroyîn hatine parastin li benda lêkolîn û weşanê nîn.

Destnivîsên kurdî mîratên girîngtirîn ên çavkaniyên dîroka çanda me nin û ew ji bona lêkolîna dîrok, ziman, wêje û etnografya miletê me bingehên herî pêbawer in.

Lêkolîn, şirovekirin û weşandina destnivîsên kurdî ne tenê bona ronahîkirina dîroka çanda kurdan pêwist in, ew her weha qezenceke gelek giranbiha ye di warê pêşdeketina zanyariyê û pê re jî nasandina kultura welatê me li cîhanê jî gelekî girîng in.





## Dîroka 7 hezar salî

# Mêvanê Birca Bizinan zêde dibin

Tûrîstên xwemalî û biyanî yên ku ji bo gerê tên Diyarbekirê di nav cihên dîrokî de herî zêde "Birca Bizinê ya 7 hezar salî" ziyaret dikin.

Li Diyarbekirê ji mekanên ku herî zêde bala tûrsîtan dikşîne yek jî Birca Bizinê ye. Wisa tê texmînkirin ku Birca Bizinê ya li Sûr a navçeya Diyarbekirê herî kêm 7 hezar salî ye. Lewra Sûrên Diyarbekirê bi taybetiya dirêjahî û meziniya xwe piştî Sûra Çînê li seranserê dinyayê di rêza duyemîn de cih digre. Li ser Bedena Diyarbekirê gelek birc hene û ji van yek jî birca bizinê ye.

Birca bizinê di dema Romayên Rojhilat de li ser zinarekî ku bilindahiya wî bi qasî 100 mêtroyî ye wek perestgeh hatiye avakirin û di dema Şemsiyan de jî hatiye bikaranîn. Birc di dema Merwaniyan de jî beşdarî sûrên Diyarbekirê hat kirin û di sala 2004an de jî bi destê Wezareta Çand û Tûrîzmê ve hat restorasyonkirin û ji tûrîstan re hat vekirin.



Li ser sûrên Diyarbekirê 76 birc hene û birca Bizinê jî ji vana yek e. Niha di qata jêr a birca bizinê de amûrên diyariyê tên firotin û li ser bircê jî ziyaretvan dikarin li bergeha Pira Deh Çavî, Kirklar Dagi û Baxçeyên Hewsêlê binihêrin û çaya xwe vexwin.

Hîndekarê Beşa Hunerên Xweş a Fakulteya Perwerdehiyê ya Ziya Gokalp a Zanîngeha Dîcleyê Doç. Dr. Îrfan Yildiz daxuyanî da nûçegihanê AAyê û diyar kir ku herî zêde ev birc ji aliyê tûrîstên xwemalî û biyanî ve tê ziyaretkirin. Yildiz axaftina xwe wiha domand: "birca Bizinê di dema Romayan de li rojhilatê Taxa Deriyê Mêrdînê li ser zinarekî hat avakirin. Birc paşê hilweşiya û di navbera salên 1030 û 1038an de bi emrê serokê Merwaniyan Ebû Nasir Ahmet ve hat temîrkirin."

Wateya wê "cihê ku qîz lê dimînin"

Nivîskarê lêkolîner Mehmet Alî Abakay jî destnîşan kir ku navê bircê bi rastî Birca Keçikan e lê ji ber "keçî" bi tirkî tê meneya "bizin" ê di nav gel de bi vî navî tê zanîn.

# "Kilama Dayika Min" kete vîzyonê

Fîlma derhênerê kurd Erol Mîntaş 'Kilama Dayik Min' kete vîzyonê. Fîlm kurdî û tirkî hatiye kişandin û di festîwalên Saraybosnayê û Altin Portakalê de xelat standibû.

Fîlma ku galaya wê li Stenbolê hate kirin, piştre lig elek bajarên Tirkiye û Kurdistanê hat pêşberî temaşevanan. Derhênerê fîlmê Erol Mîntaş li ser fîlma xwe daxuyaniyek da û got ji bo çîroka wî kilamên kurdî rê nîşanî wî dane.

Mîntaş daxuyand ku di çanda kurdan de cihê stran û kilaman gelekî girîng e û wiha peyivî, "Wan salên ku stranên kurdî ku hatibûn qedexekirin, ew ji bo kurdan mîna qêrîneke bûn. Kurdan gelek caran bi van stranan dengê xwe gihandin dinyayê. Bi van stranan di dilê merivan de dîsa ji bo jiyanê hêvî çêbû. Van stranan jiyana me motîve dikir."

Min bi çîrokên kurdî zimanê xwe parast

Mîntaş diyar kir ku li Qersê zarokatiya wî bi guhdarkirina dengbêj û hozanan derbas bûye. Di van demên dawîn de di gelek fîlmên kurdî de deng û kilamên kurdî tên bikaranîn û wiha dewam kir:

"Me bi saya stranên Radyoya Yêrîvanê yên xweşik, çîrokên ku dayik û bavê min ji me re digotin zimanê xwe parast. Paşê dema ez ji malbata xwe dûr ketim û min koçî bajerên mezin kir dîsa ew stran û dengbêj bi kêrî min hatin."

Mîntaş diyar kir ku fîlma wî bi 45 kopyeyan 12 bajêran li 20 salonan tê nîşandan. Mîntaş dîsa got ku daxwaza wan ew e ku di serî kurd bi tevahî hemû sînemahez bên fîlma wî temaşe bikin.

Fîlma Kilama Dayika Min, di 51emîn Mihrîcana Fîlman a Porteqala Zêrîn a Antalyayê a Navneteweyî de çar xelat wergirtibû. Ew jî xelatên "Fîlma Ewil a Herî Baş", "Mûzîka Herî Baş", "Lîstikvanê Mêr ê Herî Baş" û "Lîstikvanê Mêr ê Alîkar ê Herî Baş" bûn.

Fîlm di payîza 2013'an de li Stenbol û Bazîdê hat kişandin. Fîlm behsa jiyana dayikek û kurê wî dike ku ji ber projeya ji nû ve avakirina Tarlabaşiyê mejbûrî koçkirinê dibin. Di fîlmê de rolên sereke Feyyaz Dûman, Zubeyde Ronahî û Nesrîn Cavadzade dileyîzin. Lîstikvanên din jî Azîz Çapkûrt, Ferît Kaya û Cuneyt Yalaz in.






## Lîstikên bi kurdî li Enqereyê ne

Di çarçoveya Festîvala Şanoyê ya Navneteweyî de sê lîstikên bi kurdî jî li Enqereyê derdikevin ser dikê.

Festîvala ku ji aliyê TAKSAV ve tê organîzekirin di navbera 21-30'ê mehê li dar dikeve. Di festîvalê de ji gelek welatên cûda 57 lîstik derdikevin pêşberî temaşevanan.

Di nav lîstikan de du lîstikên bi kurdî jî hene. Yek ji wan lîstika Şanoya Şaredariya Bajarê mezin a Amedê ya bi navê "Xwezgînî" ye. Lîstika din jî lîstika Şano Nan "Nobedarê Deriyê Cenetê" ya ku derhêneriya wê Kemal Orgun kiriye ye.

## Rihê muzîka kurdî dengbêjî ye

**Tu di nava malbatek dengbêj de mezin bûyî. Vê yekî bandorek çewa li ser mûzîka te kiriye?**

Dengbêjiya di nav malbatê de ji bo min bû siûdek mezin. Ev nêzî 20 salane ez di nava mûzîkê de me. Lê dîsa jî ku meriv lê dinêre ez hê jî li ser wê kokê me. Heta niha jî tarza ku ez herî baş dikarim guhdar bikim dengbêjî ye. Her çiqas tu bibêjî ez ê ji mûzîka rojhilat û rojava sentezek ava bikim jî, dîsa tê ser koka xwe, ser dengbêjiyê. Em hemû jî dizanin ku dengbêjî di nav çand û hunera kurdî de xwedî cîhek girîng e û ji bo ziman jî bûye sîwanekî parastinê. Ku meriv li çend sal berê jî dinêre dibîne ku mûzîka kurdî kokên xwe ji denbêjiyê digire. Helbet di dengbêjiyê de kêmasî û tiştên şaş jî hebûn, wek dengbêjiya axa û eşîran. Lê dîsa jî bo parastin û gihandina vê rojê rolek sereke lîstiye.

## Mervan Tan:

# Mûzîka kurdî di nava tevlîheviyê de ye

Gulê Demîr

Hunermend Mervan Tan li Tetwana Bedlîsê ji dayîk bû û zarokatiya xwe li ber qerexa Gola Wanê derbas kir. Hunermend Tan, hêj di zarokatiya xwe de bi kilamên dengbêjî yên dayîk û bavê xwe mezin bû. Ji ber vê yekê jî Tan ji biçûktiya xwe ve di nava mûzîk, çand û kelepûra kurdî de mezin bû. Hunermend ê ku di nava lêgerînekî de bû, di sala 1990'î de berê xwe da metropola Tirkiyeyê Stenbolê. Piştî ew hate Stenbolê, di sala 1996'an de tevlî xebatên hunerî yên Navenda Çanda Mezopotamyayê (NÇM) bû û xebatên xwe li vir domand. Tan, di NÇM'ê de 7 salan di nava Koma Agirê Jiyan de wekî solîst kar û barên xwe yên mûzîkê berdewam kir. Piştre yekemîn albuma xwe ya solo ya bi navê "Zarîn" di sala 2009'an de pêşkeşî guhdarvanan kir. Ji bilî xebatên albûmê Tan, li Kurdistan, Tirkiyê û welatên din konseran xwe jî hêj didomîne. Hunermend Tan, niha xebatên amadekariyên projeyek nû dike. Boneya ku di nava kilamên denbêjan de mezin bûye, dixwaze albûmek ji Payîzokên Botanê û Dengbêjên Serhedê pêk tê derxe û bi vî avayî jî hewl dide ku tiştekî heta niha nehatiye ceribandin, bi ceribîne. Em wek BasNûçe beriya ku Mervan ji bo konsera piştgiriya Rojava biçe Kanadayê pêre axivîn.



**Ku dengbêjî di jiyana we de ewqas girîng e, gelo hûn difikirin bi tarza dengbêjiyê xebatan bikin?**

Bi rastî ev çend sal e ku projeyek bi dengbêjî strînê di hişê min de heye. Ji bo wê ez dixwazim herim Kurdistanê li ser çanda dengbêjiyê lêkolîn bikim û guhê xwe yê zengar girtî bi dengê dengbêjan nû bikim. Di dilê min de heye ku hema ez firsendek bibînim ezê pêk bînim. Ez difikirim ku dengbêjiya aliyê Botanê û Serhedê bînim cem hev û sentezek ava bikim. Li Botanê dibêjin Payîzok û ez dixwazim vana bi dengbêjiya Serhedê re bizeliqînim. Belkî tiştek cihê derkeve holê.

**Di dema amadekirina albûmê de zehmetiyên ku te dîdin çi ne?**

Dema min dest bi albûma "Zarîn" kir ez ji saziyê cihê bibûm. Di çêkirina albûme de hemû bar li ser pişta hunermend e. Helbet nas û dost alîkarî didin lê di warê aborî de gelek astengî derdikeve hemberî meriv. Di gotinan de Murat Yapiştiran alîkarî da me û hin mûzîkarên din jî her wisa, ez ji vir spasiyê xwe ji wan re dişînim. Di albûmê de li ser "Destana Mûso" tê sekinandin. "Xewna Xelefê" rastîn li ku derê dest pê dike û 'bavê Xelef", "Mûso" û serboriyên wî tê gotin. Di gotinên vê de jî Turan Yapiştiran alîkarî da min. Dû re me bi Zelal Gokçe re duetek çekir.

Niha di mûzîka kurdî de tevlihevîyek heye, tu nikarî yê baş û xirap ji hev veqetînî. Dema te albûmê çêkir û xelas kir vê carê jî pirsgirêka belavkirinê derdikeve pêberî te. Li gel vê jî ji xwe reklam tune û naskirin jî dereng dibe. Ji ber van sedeman xebatên derxistina albûma min ya yekemîn nêzikî du salan berdewam kir. Di vê pêvajoyê de ez gelek westiyam û hêdî hêdî bi ser xwe ve têm ku amadekariya albûmek din bikim. Di warê nasandinê de jî heman pirsgirêk derket hemberî min. Ez di Koma Agirê Jiyan de bûm, di komê de kes bi navê xwe nedihat zanîn. Niha jî Agirê Jiyan e, kes nizane kî di nav de ye, kî çi dike? Ku tu ji komê diqetî wek ji nû ve dest bi mûzîkê bikî.

**Rexneya ku qelîteya muzzîka kurdî ketî ye tê kirin?**

Di dema denbêjan de jî ku tenê şêweyek hebû, wek niha nexitimî bû. Di vir de hinek rehetiya avakirina derfetan jî heye. Her kesê bixwaze dikare navê hunermendiyê bi xwe ve dayne. Bi rastî pergal jî bi televîzyonan piştgirî dide wan. Mûzîka kurdî di wan televîzyonên kurdî de tê dejenere kirin û ji koka wî tê dûrxistin. Pergal jî ji ber ku dizane ev kes çand û kelepûra kurdî xera dikin, piştgirî dide wan. Pergal niha dixwaze bi çand û hunerê bi ser kurdan de were. Wek ku tê zanîn dema çand û kelepûra miletekê xerap bibe tu cihêtiya wî gelê namîne. Ji bo wî divê meriv pergalê biçûk nebîne. Di van dawiyan de jî tarzek arabesk derketiye holê ku li gelek cîhan belav bûye. Di vir de hin kêmasiyên me jî hene. Ku tu cîhek vala bihêlî pergal jî bi hêza xwe wê derê dike. Ev yekem berpirsiyariya saziyan bû. Ku saziyên me di demên zor û zehmet de dest pê kir, salên 90'î derbas kir, lê wî serkeftina xwe negîhand van salên dawî. Me baş fam nekir û em baş nexebitîn, ji bo wî min rewşa niha texmîn dikir. Me ev kêmasiyên xwe dîtin û ez bawer dikim ku em bikaribin ji hêqê wî werin.

**Piştî albûma Zarîn em li benda çi bin?**

Di 14'ê kanûnê de ez ê ji bo piştgiriya Rojava biçim Kanadayê û li wir beşdarê konserekî bibim. Beriya wê jî li Kurdistanê çend rêze konserên min hene. Niha li ser çend projeyan dixebitim lê ne bi lezgînîyek. Min berê lez kir, ji ber we jî gelek westiyam. Ku derfetên min çêbe ez ê herêm bi herêm li Kurdistanê bigerim û projeya xwe ya li ser dengbêjiyê pêk bînim. Niha her kes heman karî dike, ji bo wê jî projeya min ya senteza dengbêjiyê, wê hinek cihê be.